# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL Hejmar: 58 15 - 21 Hazîran 2015 basnews.com


Nazhad A.Sumer:

## Dixwazim bînêr bi tabloyên min xewnan bibînin

R16



# Ji bo pêşeroja nû destûra nû

Li Herêma Kurdistanê ku pêvçûn û şerê bi DAIŞ'ê re gihîşt asta dawîn nîqaşên serxwebûn, destûra nû û hilbijartina serokatiyê rojevê dadigrin.

Herwiha beriya operasyona Musilê çavlirê ye ku ew mijar bi lihevkirineke hemû aliyan bi temamî zelal bibin û destura nu were rojeva parlamenê. R02-3





## Dewleta netewî û rehendên nû

R05

## Kurdistanî ji bo serkeftina HDP'ê çi dibêjin?

R06-7

## Kitabê Murat Canşadî "Hesê Mişî"

R13

## "Siberoja kurdan serxwebûnê ferz dike"



R08-9

Di vê pêvajoya ku li Başûr, li gel şerê DAIŞ'ê, ji bo serxwebûnê dîplomasiyeke mezin tê meşandin, li Rojava, dereng be jî hêzên kurd kembera ereb dane ber derban, li Rojava piştî serhildana Mahabadê bêdengî serdest bûye û li Bakur jî, piştî hilbijartinan di derbarê çareseriya pirsgirêka kurd de nediyariyek peyda bûye de, Serokê Partiya Sosyalîzm û Azadiyê (ÖSP) Sinan Çiftyürek, ji bo serxwebûnê li gel piştgiriya navnetewî pêwîstiya xweamadekirinê ferz kir û got: "Amedebûn bi yekîtiyê pêkan dibe"

## Başûr û Rojava digîhîjin hev

Hêzên kurd bi piştgiriya hêzên hewayî yên hevpeymanê Silûk a girêdayî Girêspî ku wek baregeha DAIŞ'ê tê qebûlkirin ji du milan ve dorpêçkirin û li gor agahiyan filîtan DAIŞ'ê ya li vir ne mimkûn e. Ji ber ku Silûk cihekî di navbera Reqa û Girêspî de ye û DAIŞ teqemeniya xwe ya li Reqayê bi ser vê herêmê ve arasteyî Girêspî dike, ew der cihêkî girîng e. Heke ku Silûk bikeve rizgarkirina Girêspî hêsan dibe û hemû xeta ku li Efrînê destpê dike û ta diçe Başûrê Kurdistanê bi temamî dekeve destê kurdan. Rizgarkirina Silûk ew e ku Başûr û Rojava digîhîjin hev. R04

# Destûra nû amade

Li Başûrê Kurdistanê, piştî bêdengiyekê, rojev dîsa gurr bû. Di vê hefteya ku mijarên wek destpêkirina operasyona rizgarkirina Mûsilê, nîqaşên li ser pergala rêvebirina Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) û gelek babetên din di rojevê de cih girtin de, serdana Serokkomarê Iraqê Fûad Mahsûm a Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî jî balê kêşa.ku hemû dinya çavlirê bû destpê kir.

Li Herêma Kurdistanê geşedana herî grîng destpêkirina operasyona rizgarkirina Mûsilê ku bi mehan e hemû dinya çavlirêya wê bû. Her çiqas Generalê Fermandariya Operasyonên Nînovayê ye Artêşa Iraqê Necmeddîn El Cûbûrî ragihîne ku operasyona Mûsilê destpê kirî ye jî jêderên me yên ji herêmê didin zanîn ku wek fermî operasyon nehatiye destpêkirin, lê belê amadekariyên operasyonê pir bi lez bûne û tê plankirin ku piştî meha Remezanê operasyon bê destpêkirin.

Di çarçoveya amadekariyên operasyonê de artêşa Iraqê yekîneyên xwe li Beycî'ya li ser rêya Mûsilê bi cih kirî ye. Hêzên Pêşmerge jî ji alî bakur-rojava ve, rêya Şengal û Til Efer'a ku ji bo operasyonê rêyeke pir stratejîk e xistine bin kontrola xwe û frokeyên hêzên asmanî yên hevpeyman, li derdora Nînova û Mûsilê, li dij baregehên DAIŞ'ê êrîşên hewayî dane destpêkirin. Jêderên herêmê her wiha radigihînin ku ji ber Ramadî careke din ji alî DAIŞ'ê ve hate kontrolkirin, egerî heye ku operasyona ku tê payîn piştî Remezanê destpê bike hinekî din jî bê taloqkirin.



### Niqaşên li ser destûrê zêde bûn

Piştî ku Serokatiya Herêma Kurdistanê ragihand ku wê hilbijartinên serokatiyê di 20'ê Tebaxê de bêne kirin, di navbera Partiya Demokrat a Kurdistanê (PDK) û Tevgera Goran de nîqaşa li ser destûrê û şeweyê pergala rêvebirina Herêma Kurdistanê gurr bûn. Weke tê zanîn PDK, li gel berdewamiya pergala parlamentiyê, dixwaze ku Serokê Herêma Kurdistanê ji alî gel ve bê hilbijartin. Parlementerê PDK'ê Osman Weysî ku di heman demê endamê lijneya jinûve nivîsandina destûra nû ye, ragihandibû ku di navbera aliyên siyasî de hin nêrînên cuda ku bûne sedemên nakokiyan derketine, lê belê ew hewl didin ku van nakokiyan çareser bikin. Di derbarê lijneya jinûve nivîsandina destûra Herêma Kurdistanê de jî Weysî da zanîn ku lijneyê heta niha 7 civîn pêk aniye û di encama xebatan de çarçoveyek derketiye holê.

### Di derbarê mijarê de parlamenta Tevgera

Goran Kwêstan Mihemed ji BasNûçeyê re ragihand ku Lijneya Amadekar a Destûrê, heta niha 7 civînên mezin pêk aniye, di destpêkê de ji bo lijneyê peywirnameyek hatiye amadekirin û ji alî lijneyê ve hatiye pesendkirin û li ser rêzikên vê peywirnameyê xebat têne meşandin. Mihemed, da zanîn ku heta niha li ser 12 xalên bingehîn yên destûrê hevbiryarek hatiye stendin, di vê çarçoveyê de hatiye destnîşankirin ku wê Rêveberiya Herêma Kurdistanê bi pergala parlamanî, Komarî, demokrasî bê bi rê ve birin, wê di destûrê de hukumranî di destê gel de be, wê herêmên bi nakok ên wek Kerkûk, Şengal û yên din jî tê de, wê sînorê Başûrê Kurdistanê bê destnîşankirin, wê zimanê fermî yê RHK'ê kurdî be û wê mafê hemû pekhateyên Kurdistan bêne mîsogerkirin. Di derbarê nakokiya ku di navbera Tevgera Goran û PDK'ê de heye de jî Kwêstan Mihemed da zanîn ku PDK dixwaze serokê herêmê ji alî gel ve bê hilbijartin, li berambêrî vê yekê ew dixwazin ku di çarçoveya perala palmamenî de serokê herêmê ji alî parlamenê ve bê hilbijartin. Mihemed anî ziman ku ev nakokiya di navbera Tevgera Goran û PDK'ê de heye ne nakokiyeke nav lijneya amadekar a destûrê ye, nakokiyeke li derveyê lijneyê ye.

### 'Partiyên Îslamî doza şerîetê dikin'

Di derbarê mijarê û helwesta Yekîtiya Niştimanên Kurdistanê(YNK) de jî Parlamentê YNK'e Goran Azad jî ragihand ku wek YNK ew jî hez dikin ku Serokê Herêmê ji alî parlamenê ve bê hilbijartin. Goran Azad di hevpeyvîna xwe ya li gel rojnameya me de da zanîn ku xebatên lijneya amadekar heta niha negihîştiye ew xalên ku nakokî li serê hene, di nav demê de ew çavlirê ne ku hin nakokiyên din jî rû bidin, lê belê hemû aliyên siyasî di derbarê encamdana destûrê de biryardar in. Azad wiha got: "Hebûna nakokiyan teştekî pir asan e û taybetiyên demokrasiyê şanî me didin. Bêguman wê nakokî hebin û divê hebin. Wek nimûne partiyên îslamî doza şertên şerîetê dikin. Ev jî mafê wan e ku hewl bidin ramanên xwe di destûrê de bi cih bikin. Lê belê rîwangeyên ji hev cûda hene û divê destûreke ku hemû alî wê pesend bikin encam bide.

### Fûad Mahsûm serdana Barzanî kir

Serokkomarê Iraqê Fûad Masum ku ji bo hin hevdîtinan pêk bîne, hatibû Herêma Kurdistanê, serdana Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî kir. Di vê serdana ku li Koşka Serokatiyê ya li Seleheddînê pêk hat de de geşedanên siyasî û leşkerî yên dawî yên Herêma Kurdistanê û Iraqê hatin gotûbêjkirin. Di vê hevdîtina ku her dû serokan li ser mijara qeyrana budceyê û arastekirina petrola Herêmê de heman daxwazan kirin. Barzanî di hevdîtinê de anî ziman ku ji bo hemû pêkhateyên olî û neteweyî yên li Iraqê dikaribin jiyaneke aştiyane bijîn, divê hikûmeta navendî bi hemû hêza xwe helw bide ku aştiyeke mayînde pêk bîne. Serokkomarê Iraqê Fûad Mahsûm jî di serdanê de da zanîn ku li Herêma Kurdistanê hejmara penaber û koçberan gellek zêde ye û ne pêkan e ku RHK'ê bi serê xwe pêdiviyên hemûyan bi cih bîne. Mahsûm, pêwîstiya alîkariya dezgehên alîariyê yên navneteweyî destnîşan kir û got: "Divê welatên dinyayê dest bihavêjin vî barê ku ketiye stûyê RHK'ê. Her wiha hikûmeta Iraqê jî divê peywira xwe bi cih bîne.

### Mesud Barzanî derket gera dewletên ereb

# dibe!



Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî derkete gera dewletên ereb. Bi mebesta ku bi serok û berpirsên dewletên Kuweyt û îmarata Yekîtiya Ereb re di derbarê şerê li dij DAIŞ'ê, rewşa penaberên ku ji ber şer koçî Herêma Kurdistanê kirine û pêdiviya wan bi alîkariyan heye û pêwendiyên aborî û siyasî yên bi wan dewletan re hevdîtinan pêk bîne derket gera van welatan. Di van serdanan de Rawêjkarê Asayîşa Giştî Mesrûr Barzanî, Serokê Dîwana Serokatiyê Fûad Husên û Wezîrê Plandananê Elî Sindî û çendek şêwirmend jî li gel Barzanî ne.

**Di navbera Pêşmerge û Heşdî Şabî de pevçûn derketin**

Li Başûrê Kurdistanê li gel geşedanê siyasî û dîplomatîk, eniyên şer jî hêdî hêdî germtir dibin. Ji aliyekî ve amadekariyên operasyona rizgarkirina Mûsilê didomin û ji alî din ve jî hemû hêzên ku di vê qadê de hesabên wan hene di nav hewldanan de ne. Geşedana dawî ku li Celewla û Sadiye rû da, vê yekê piştrast dike. Hate ragihandin ku li navçeyên Celewla û Sadiye, piştî ku endamên Heşdî Şabî ji Pêşmerge dixwazin ku ji vê herêmê vekişin, rikberiyek durust dibe û di encamê de pevçûn rû didin. Di derbarê mijarê de Berdevkê Wezareta Pêşmerge Cebbar Yawer ji Basnews'ê re ragihand ku ji bo pevçûn bêne rawestandin û mijar bê zelalkirin lijneyeke Wezareta Pêşmerge, bi rayedarên Iraqî û berpirsên Heşdî Şabî re hevdîtinan pêk anîne. Yawer diyar kir ku ev pirgirêkeke mezin nîne û di demeke kurt de wê ev pirsgirêk bêne çareserkirin. Hate ragihandin ku di van pevçûnan de tu wundahiyên Pêşmerge tunene, lê belê Reuters'ê di nûçeya xwe ya ku ji çavkaniyên ewlehiyê wergirtiye de ragihand ku di encama pevçûnan de 5 kesan jiyana xwe ji dest daye.

**Êrîşên hewayî didomin**

Frokeyên şer ên hêzên hevpeyman, li dij baregehên leşkerî yên DAIŞ'ê êrîşên xwe didomînin. Hate ragihandin ku di encama bombebarana frokeyên hevpeyman a gundê Werdek ê Mûsilê de bi dehan endamên DAIŞ'ê hatine kuştin û gellek sadegeh û maşînên wê yên leşkerî hatine teqandin.

Ji alî din ve li bajarokê Hewîceya Kerkûkê, DAIŞ'iyên ku yekemîn salvegera dagirkirina Mûsilê pîroz dikirin rastî êrîşeke tûnd a hewayî hatin. Di vê êrîşa hewayî ya li navenda Hewîceyê de 50 DAIŞ'î hatin kuştin. Di derbarê vê operasyonê de Berpirsê Şaxê Keraçê yê PDK'ê Îsmaîl Mihemmed ji Basnews'ê re ragihand ku DAIŞ'iyên ku ji bo pîrozkirina dagirkirina salvegera Mûsilê li navenda Hewîceyê kom bûne rastî êrîşeke hewayî ya mezin hatine, di encama vê êrîşê de nêzîkî 50 endamên DAIŞ'ê hatine kuştin û bi dehan ji wan jî birîndar bûne. Wêneyên ku di malperên nêzîkî DAIŞ'ê de hatine weşandin jî operasyonê û pir hejmara wundahiyên DAIŞ'ê piştrast dikin. Weke tê zanîn Hewîce jî yek ji grîngtirîn navendên leşkerî yên DAIŞ'ê ye û DAIŞ'ê Pêşmergeyên ku dîl ketibûn destê wê li vê navçeyê digirt.

**Çekên giran gihîştin Iraqê**

Piştî serdana DYA ya Serokwezîrê Iraqê Haydar Abadî ku ji DYA'yê xweste ku ji bo rizgarkirina parêzgeha Ambarê çekên giran bidine Iraqê, jêderên herêmî radigihînin ku li gel 80 leşkerên Amerîkî ew çekên giran gihîştine Iraqê. Pentagonê jî vê agahiyê piştrast kir û ragihand ku 80 leşkerên wan li gel çekên giran gihîştine Anbarê. Pentagonê her wiha diyar kir ku wê 450 leşkerên xwe ji bo perwerdehiya artêşa Iraqê bişînin Iraqê, lê belê wê ev leşkerên wan beşdarê operasyonan nebin. Tê payîn ku ev çekên giran ku niha li baregehên leşkerî yên Hebaniyê û Eyn Esedê yen bajarê Ramadiyê hatine bi cihkirin, wê di operasyonên mezin ên bidestxistina bajarên wek Anbar û Mûsilê de bêne bikaranîn. 80 leşkerên Amerîkî ku li gel van çekên giran arasteyî Iraqê hatibûn kirin, wê her wiha perwerdehiya bikaranîna van çekan jî bide endamên artêşa Iraqê.

Ji alî din ve komên çekdar ên Heşdî Şabî ragihandin ku ew li dijî hatina leşkerên DYA yên ku ji bo perwerdekirina artêşa Iraqê ne. Koma Ehlî Heq ku yek ji komên tûndrew ên Heşdî Şabî ye, hatine leşkerên DYA'yê wek binpêkirina hukumraniya Iraqê nîşan da û xwest ku ev yek bê sekinandin. Komê daxuyand ku serpêhatiyên wan ew têgihandine ku pêngavên ku DYA dide destpêkirin, pêşî li DAIŞ'ê nagirin û xwest ku DYA leşkerên xwe neşîne Iraqê.

**Interest: Siûdî plana Kurdistana mezin pêşkêşî Îsraîlê kir**

The American Interest'ê angaşt ku Siûda Erebistanê ji bo damezirandina dewleta kurd planeke ku ji 7 xalan pêk tê pêşkêşî Îsraîlê kirî ye. Nûçe balê dikêşîne ser şerê li dij DAIŞ'ê û dibêje; "Li gel ku kurd di bin gefa DAIŞ'ê de ne jî dîsa qezenc dikin" Di nûçeyê de wiha tê gotin: "Kurdistana serbixwe tu carî ev çend nêzîk nebûbû, lê belê hêman û rîskên ku vê hêviyê mizin dikin, di heman demê de rîskan jî di xwe de dihewînin. Dîsa jî kurd û serkirdeyên kurdan tu carî ev çend nêzîkî serkeftinê nebûne"

Rojname di nûçeya xwe de balê dikêşîne ser serkeftina HDP'ê ya hilbijartinên 7'ê Hezîranê ya li Tirkiyeyê, dide zanîn ku beşeke mezin ya kurdên Bakur heta niha dengên xwe didane AKP'ê, le piştî helwesta Erdoğan a li dijî Kobanê û rawestandina hevdîtinên pêvajoya çareseriyê mîsoger bû ku Erdoğan ne samîmî ye.

The American Interest'ê di nûçeya xwe de helwesta Siûda Erebistanê ku dixwaze li ser beşek ji axa Tirkiye, Îran, Iraq û Sûriyeyê dewleteke kurd damezirîne balkêş dinirxîne û wiha dom dike:

Piştî ku Kral Salman derkete ser text, polîtîkayên ku Siûdî bi salan e dimeşand da aliyekî û bi şêweyeke agresîf li herêmê ket nav hin hewldanan. Piştgirîkirina Siûdî ya dewleta kurd, hem di nav Îranê de û hem jî li Iraq û Sûriye, ji bo Îranê tê wateya derbeke mezin. Lê xala balkêş ya vê xwesteka Siûdî ew e ku Tirkiyeyê jî xistiye nav dewletên ku divê bêne perçekirin û ev jî tê wê wateyê ku hevkariya Tirkiye û Siûdî ya li ser Sûriyeyê jî baş nameşe. Hemû ev geşedan, derfetên nû derdixin pêşberî kurdan. Ev tê wê wateyê ku DYA jî di nav de sê hêzên navneteweyî yên ku kurd dikarin ji bo berjewendiyên xwe di nav wan de bazara xwe xweştir bikin hene. Ev rewş, li ser maseya bazarê de, di heman demê de gellek kursiyên din pêşkêşî kurdan dike. Wek nimûne; Rola Rêveberiya Hewlêrê, ya HDP'ya ku bi hêz diçe Enqereyê û PYD'ê ya di plansaziya şerê li dij DAIŞ'ê. Lê belê dîsa jî gellek astengiyên ku divê kurd pê re rûbirû bibin û wan derbas bikin hene"



## "Iraq piştevanê DAIŞ'ê ye"

Rawêjkarê Asayişa Giştî ya RHK'ê Mesrûr Barzanî, ji ber ku dema dagirkirina Mûsilê ya DAIŞ'ê de artêşa Iraqê bêyî ku şer bike, hemû çek û teqemeniyê Parêzgeha Mûsilê ji DAIŞ'ê re hiştiye û reviyaye, Bewdayê bi tawanê piştevanê herî mezin ê neyekser ê DAIŞ'ê tawanbar kir. Barzanî, di civîna xwe ya ku bi rojnamegerên Kuweytî re pêk hanî de got: "Ji ber ku hemû çekên giran û cebilxaneyên li Mûsilê ji DAIŞ'ê re hişt û reviya, Iraq bûye piştevanê herî mezin ê neyekser ê DAIŞ'ê. Ji ber vê yekê, ji bo Pêşmerge dikaribe bi şêweyeki hevsengî li dij DAIŞ'ê şer bike, pêdivî bi çekên giran û pêşketî heye. Her wiha, ji bo têkbirina DAIŞ'ê pêwîstî bi hevkariya hemû aliyan jî heye"

Mesrûr Barzanî di berdewamiya axaftina xwe de balê kêşa ser helwesta raya navdewletî û diyar kir ku DAIŞ her çiqas di warê leşkerî de lawaz bibe jî divê feraseta bîrdoziya wê bê pûçderxistin. Barzanî got: "Ger ku raya navdewletî di vê babetê de biryardar be em ê dikaribin hem di warê leşkerî û hem jî di warê bîrdozî de pişta DAIŞ'ê bişkênin. Lê dibe ku pûçkirina bîrdozî ya DAIŞ'ê demek dirêj dom bike" Barzanî her wiha sedemên afirîna bîrdoziya DAIŞ'ê bi rewşa piştî rûxandina rejîma baasê û kiryarên Bexdayê ve girêda û got ku ew rewşa ku piştî rejima baasê têk çû û sunne hatin qewirandin ji bo DAIŞ'ê bû bingeheke bîrdozî ku li ser wê xwe bi rêxistin bike.

# Başûr û Rojava digîhîjin hev



**Barış Dokçu**

Di şerê ku li Rojava di navbera DAIŞ û hêzên kurd ên ku Volkana Firadê û hêzên asîmanî yên hevpeymana navnetewî piştgiriya wan dikin li warekî gelekî stratejîk ê ku dikare rewşa şer bi temamî veguhizîne, li Silûk a Girêspî bi dijwarî beredwam e. Wek tê zanîn piştî li Kobanê DAIŞ bi temamî hate têkbirin û hêzen kurd berê xwe dan navçeyên din ên Rojava, şerê li herêmê belav bibû û li her alî ve pêvçûn û bûyerên dijwar destpêkiribûn. Herwiha di rojên dawîn de hêzên kurd bi piştgiriya hêzên hewayî yên hevpeymanê Silûk a girêdayî Girêspî ku wek baregeha DAIŞ'ê tê qebûlkirin ji du milan ve dorpêçkirin û li gor agahiyan filîtan DAIŞ'ê ya li vir ne mimkûn e. Ji ber ku Silûk cihekî di navbera Reqa û Girêspî de ye û DAIŞ teqemeniya xwe ya li Reqayê bi ser vê herêmê ve arasteyî Girêspî dike, ew der cihêkî girîng e. Heke ku Silûk bikeve rizgarkirina Girêspî hêsan dibe û hemû xeta ku li Efrînê destpê dike û ta diçe Başûrê Kurdistanê bi temamî dekeve destê kurdan. Rizgarkirina Silûk ew e ku Başûr û Rojava digîhîjin hev.

Piştî ku aliyê Kobanê û Hesekê bi temamî hat rizgarkirin û DAIŞ li van deweran hat qewirandin, bo ku cihên di navbera Kobanê û Hesekê de yên ku di destê DAIŞ'ê de ne bên rizgarkirin YPG/YPJ û Volkana Firatê operasyoneke mezin dabû destpêkirin. Operasyona ku bi armanca rizgargirina Silûkê ya girêdayî Girêspî ku di navbera Reqa û Girêspî de çih digire hat destpêbûn di nava çend rojan de encamên balkêş dan û DAIŞ'iyên li vir ketin dafikê. Ji ber ku Reqa ya ku fermangeha herî mezin a DAIŞ'ê ya li Suriye'yê ye û Silûk jî bo hinardina teqemeniya ji Reqa'yê ber bi Girêspî ve qonaxeke pir stratejîk e, rizgarbûna vir weke rizgarkirina Girêspî tê qebûlkirin.

Li gor agahiyên ku ji herêmê tên Silûk a 19 km nêzikî Girêspî ji aliyê rojhilat û rojava ve hatiye dorpêçkirin û pêvçûnên dijwar diqewimin. Di pêvçûnan de heta niha bi sedan DAIŞ'î hatin kuştin û rêyên kuteqemenî hinardeyî wir dibin ên li aliyê Reqa'yê bi temamî di destê hêzên kurd de ne. Her wiha balefirên hevpeymaniyê jî bê navber herêmê bombebaran dikin û tê gotin ku rizgarkirina Silûkê pir nêz e. Her wiha Silûk û Girêspî du warên dawîn yên ku DAIŞ li ser xaka Kurdistana Binxetê serdest e. Taybetbendiyeke herdû herêman jî ew e ku bi rizgariya wan deran re Kobanê û Hesekê bi hev ve tên girêdan û hemû rêyên ku ji Başûrê Kurdistanê destpê dikin heta ku digîje Efrînê bi temamî têne qontrolkirin. Ew jî tê wateya ku di temên pêş de hinardina teqemeniya ji Başûr bo Kobanê û navçeyên din ên Benxetê hêsan dibe û Başûr û Rojava bi hev ve tê girêdan û DAIŞ hema bêje bi temamî ji Kurdistanê tê paqijkirin.

### DAIŞ bi xwekuştinî êrîş dike

Li aliyê din DAIŞ'a ku di bin dorpêçeke bê filitîn de ye jî dîsa bi maşîneyên bombebarkirî û çalakiyên xwekuştinî xetera xwe didomîne. Ji herêmê hate ragihandin ku çekdarên DAIŞ'ê li Girêspî 2 malên welatiyan li gel kesên di hundir de teqandine û di encamê de 24 kes hatin qetilkirin. Li gorî agahiyên ku ji çavkaniyên herêmê hatine girtin, çekdarên DAIŞ'ê 7'ê meha pûşperê di saetên nîvro de, li bajaroka Girêspî 2 mal bi madeyên teqemeniyê teqandin. Hate îddakirin ku di malan de welatî jî hebûne û 24 kes hatine qetilkirin. Lê ji ber ku şer hîn li Girêspî berdewam e, ev agahiyên li wir tên nehatine teyîdkirin. Herwekî din beriya ku hêzên kurd berê xwe bidin vê herêmê DAIŞ'ê şêniyê kurd bi darê zorê û bi gefên kuştinê ji herêmê derxistibû û bi hezaran kurdên li wir niştecî xwe spartibûn Bakûr. Li hêla din erebên li herêmê jî weke mertal di destê DAIŞ'ê de ne li gor agahiyan DAIŞ'ê hejmareke zêde ji sivîlan jî qetilkiriye.

### YPG operasyonan lidar dixe

Navenda Çapemeniyê ya YPG'ê jî di derbarê operasyonê de daxuyaniyek ragihand û da zanîn ku operasyon di her satê de bi pêşketina kurdan dom dike û heta niha jî 8 gund û 16 gundik hatine rizgarkirin û bi sedan DAIŞ'î hatine kuştin. Li gorî daxuyaniya Navenda Çapemeniyê ya YPG'ê, her çend hejmara kuştî û birîndarên DAIŞ'iyan nehatiye zelakirin jî, li qada şer hin cenaze û teqemeniya wan hatiye desteserkirin lê xetereyeke mezin hîn jî didome ji ber ku her der hatiye mayînkirin û li derdora gundan gelek maşîneyên bombebarkirî jî hene.

### Girêspî di dorê de ye

Fermandarê YPG'ê yê herêma Qamişlo Kemal Xeyrî di civîna ku navenda YPG'ê ya Qamişlo di çarçoveya rêzecivînên gel de li taxa Xerbî axivî û got ku hêzên wan pir nêzî bajaroka Silûkê bûne û destnîşan kir hêzên wan bi saya wêrekî û qehremaniya şervanên wan bi serdikevin û heke ew Silûkê bi dest bixin, di rêzê de Girêspî heye. Fermandarê YPG'ê Xeyrî bal kişand ser rola ciwanan a di nava şer de û wiha got: "Şoreşa me bi ciwanan destpê kiriye û wê bi ciwanan bi ser dikeve. Pêwîst e hemû ciwan cihê xwe di nava şoreşê de bigirin."

### Li Kobanê şer qet nasekine

Li gor agahiyên ku ji Navenda Çapemeniyê ya YPG'ê tên, şerê li Kobanê jî hin berdewame û di encama pêvçûnên dawî de gundên Fêleh, Hêymir, Ebû Sirê, Suwahan, Lûtka, Bozê Kerzê û Girê Kêlê ji DAIŞ'ê hatine stendin. Di daxuyaniyê de hat gotin ku hejmara kuştiyên DAIŞ'ê ne diyar e û di pevçûnên li vê operasyonê de 3 hevrêyên wan yên ku bi lehengî şer dikirin jiyana xwe jidest dane.

Di dawiya daxuyaniyê de hat ragihandin ku şer hin li bejahî û li gundên Kobanê berdewame û heya tevahiya Kobanê rizgar nebe sekinîn tune ye.

### Rêveberiya Cizîrê bi gel re ye

Şandeyek ji Rêveberiya Xweser a Kantona Cizîrê çû serdana hin gundên ku dikevin başûr rojavayê Serêkaniyê ku demek beriya niha ji aliyê şervanên YPG'ê hatibûn rizgarkirin. Endamekî ji şandeyê diyar kir ku ewê hemû pêdiviyên gundiyan bicih bînin. Şande li Serêkaniyê ji aliyê Berpisyarê Buroya Têkiliyan a YPG'ê Hisên Koçer û endamên Meclîsa Gel a Serêkaniyê ve hate pêşwazîkirin. Endamên şandeyê destpêkê çûn serdana konê sersaxiyê yê ku ji bo cangoriyên berxwedana herêma Alya hatiye vedan û her wiha pirsgirêkên gundiyan guhdar kirin. Di civînan de endamê şandeyê Hisên El Ezam axivî û got: "Me xwest ku em rewşa we fêr bibin û hemû pêdiviyên we bicih bînin. Em soz didin ku wekî Rêveberiya Xweser hemû pêdiviyên we pêk bînin." Ji gundê li herêmê welatiyê bi navê Xelîl Mihemed jî diyar kir ku çekdarên DAIŞ'ê gelek ziyan daye gundên wan lê dema YPG'ê ew rizgar kirine, gelekî keyfxweş bûne û wiha dom kir: "Em bi hêvî ne ku rêveberya xweser hemû pirsgirêkên me çareser bikin."

### Li Efrînê semînera tenduristiyê

Navenda Perwede û Zanista Jinan a Efrînê jî bi alîkariya Desteya Tenduristiyê semînereke bi beşdarbûna jinan lidarxist. Semîner li navenda Yekîtiya Star a Efrînê bi beşdarbûna gelek jinan hate lidarxistin. Di semînerê de Dr. Umer li ser hin nexweşiyên zarokan û bi taybet felca zarokan û çawa çêdibe şîrove kir, her wiha çawaniya parastina ji nexweşiyê jî hate şîrovekirin. Dr. Umer her wiha da zanîn ku pêwîste dayîk zarokên xwe li dijî nexşweşiyan aşle bikin û bi vê yekê dê zarokên xwe ji nexweşiyan biparêzin.

### Tabûrek enternasyonalîst li Serêkaniyê

Tabûra bi navê 'Tabûra Azad a Enternasyonalîst' ku ji çekdarên biyanî pêk tê, bi armanca parstina hemû pêkhateyên Rojava û Rojhilata Navîn, her wiha şerê li dijî desthiladaran û DAIŞ'ê hate avakirin. Endamên tabûra ku nû hatiye avakirin, ji endamên partiya Markisî ya Lênînî, Partiya Komunist a Tirkiyê- Marksî Lînînî, hêzên hevbeş ên ku ji çerkes, yewnanî, tirk, elman û hwd. jî cihê xwe di nav de digrin.



# Dewleta netewî û rehendên nû

**Mamend Roje**

Dewleta neteweyî (Nation - Satet) cûrek taybet ji dweletên modern a cîhanê ye ku tê de saziyek siyasî di qelemrewa xakek taybet de xwedan mafê serweriyê ye. Li gor vî mafî dikare bi amrazên (arac) serbazî jî vî mafî biçespîn e. Heta vê gavê jî li gorî piraniya teoriyên peywendiyên navdewletî, dewleta mîllî yekîneya serkeye ku pergala cîhanî û pergala herêmî jî nikre viya derbas bike. Yanî heya niha alternatîvên dewleta netewî şûna wêya danegirtiye.

Mixabin îro di nav kurdan de hin teorî derketine ku bi her awayî dixwazin wê yekê îspat bikin ku dema dewleta neteweyî derbas bûye û dê formek din dewsa wêya dabigre. Berî 15-20 salên berê hin teorî derketine ku qala dawî hatina mîsiyonên dewleta netewî dikirin. Lê serbarî ku teoriyên cîhangîrî (Globalisation) û gelek şeklên yekiyiya herêmî jî li dinyayê belav bûn, hêşta yekîneya dewleta netwî yekîneya serkeya têkiliyên navdewletiye û bê vê yekîneyê, dê aloziyek mezin di sîstema cîhanî û herêmî de çêbibe.

**Dewleta netewî: Miçiqîn an rehendên nû?**

Dewleta netwî heta vê gavê jî li welatên Hiper Power û welatên Super Power jî xwedan mîsiyona xwe ye. Dibe ku hin fonkisiyonên vê dewletê hatibin guertin, lê heta niha yek teorî jî nikare wê têzê îspat bike ku dawî li karkirdên sereke ya vê dewletê hatiye. Di dawiya sedsala çûyî de gelek teoriyên nû ji bona pênase kirina sîstema piştî "cengê sar" derketin. Mîna teoriya Gundê Cîhanî (global village) ji aliyê Marshal Mcluhan ve derket. Wî ev têza xwe ji bona pêşeroja cîhanê di siya medyayê de wesifkir.

Wî got "medya bi xwe peyam e". Yanî medya êdî ne amraz belkû armance. Ew yekem kese ku medya li gor corên "sar" û "germ" dabeşkir. Ew mamostayê navenda lêkolînên medya û têkiiyên zankoya Toronto a Kanada'yê bû. Wî dixwest bêje medya ji alfabê heta komputer berdewamiya mirov e. Di rastiyê de ew hewldide bêje ku medya "çawaniya bûyîn"a me di cîhanê de diyar dike. Yanî mirov dikare bêje ewî dixwest şiroveyek fenomenî li ser jiyana mirov li gundê cîhanî pêşkêş bike. Marshal digot êdî medya û têkiliyên medya sîstema cîhanê araste dikin. Ji ber vî, wê dawî li dewletên biçûk were û dê yekîneyên mezin û cîhanî dewsa wana dabigrin.

Wî hin fikrên xwe ji Marks wergirtibû, lê hin ji teoriyên wî ji Harold Innis hatibûn wergirtin. Innis pişt re gelek hez ji hizrên şagirtên xwe Mcluhan kir. Bexta Mcluhan wê demê ber bi pêş de çû ku dîtinên kulturîxwazî ango kulturalism û "pradigmayên bandorên sinirdar" li cîhanê belav bûbûn. Innis pir kêm bi kulturalistan re bû û berdewam li dijî wan dinvîsî. Serbarî ku Mcluhan dixwest bêje bi çaxa cîhanîbûna medyayê re dinya biçûk dibe, lê ezmûnên dawş wiya îspat nekirine. Piştî wî jî wê hêdî hêdî deweletên biçûk (Nation- Sate) bihelin û dê "cîhan dewletan" dewsa wana bigrin.

**Têzên din û jidayikbûna dewletên nû**

Li kêleka wê hin têzên din jî derketin mîna "Daweiya Dîrokê" a Fokoyama jî çeşnek ji serdestiya Anglosasonê ye û di bin perdeya Neo Lîberalîzmê de xwe veşartiye. Herwiha dema Samuel Hantington teoriya "Pevçûna Şehrisyaniyan" derxist holê, bangeşeya wê yekê dikir dê dewlet – mîllet binuxime û wê Dewleta Şehrisatniyê dewsa wê dagire. Yanî berî 20 salan gelek kesan xwestin bi têz û teoriyên xwe sîstem û pergala nû a cîhana piştî cengê sar pênase bikin.

Hin ji wan girew li ser nemana yekîneya Dewlet – Netewe kiribûn. Faktên ku ew nîşan didan, hin qala wê dikirin ku piştî derketina şîrketên pirnetewe, piştî ferebûna rolên saziyên navneteweyî û piştî peyda bûna nimûneyek ji dewletên cîhanî û Yekîtiyên Herêmî (NATO-NAFTA- ASEAN-EU-ŞANGHAY û AVRASIYA ) dê hêdî – hêdî rola dewlet – netewe kêm bibe û heta dawî lê were.

Lê niha hin teoriyên nûtir hene ku van têzên berê ret dikin. Ev têzên nû dibêjin dewlet – netewe hîna jî bê bedîle. Dewlet – netewe naqede, lê hin ji fonkisiyonên wê hatine guhertin. Hin ji rehendên wê fireh bûne an jî hin ji erkên 'Dewleta Netewî' ji aliyê şîrketên pirnetewe, saziyên navnetewî û yekîtiyên navçeyî ve hatiye qelskirin.

Serbarî viya jî heta niha yekîneya dewlet – netewe yekîneya serekeye ku di nav sîstema cîhanî û pergala herêmî de rola aktorên sereke dilîze. Ji bo mînak herku diçe dewletên netewî yên nû ji dayik dibin. Dewletên dawî ji îbaretin ji: Bosniya, Kozovo, Abxaziya, Osêtiya, Başûrê Sûdan. Herwiha dê di pêşerojek nêzîk de jî xwesteka wan neteweyan jî ji bo avakirina 'Dewleta Ntetwî' derbazî pratîkê bibe:

Makedoniya, Kataloniya, Skoçiya, Filistîn û Herêma Kurdistanê...

# Kurdistanî ji bo serkef




**Mustafa Turan**

Piştî ku Partiya Demokrat a Gelan (HDP) di hilbijartinên 7'ê Hezîranê yên li Tirkiyeyê de bi sê pileyên zêde benda ji sedî 10'an derbas kir û bi 80 parlamenî beşdarê Parlamenta Tirkiyeyê bû, ev serkeftina wê li hemû perçeyên Kurdistanê û cîhanê olan da. Bi mebesta ku em ramanên kes û saziyên ji çar perçeyên Kurdistanê yên di derbarê serkeftina HDP'ê de hîn bibin me nêrînên wan stend.

**Çêner Elî Ahmed**
**Yekîtiya Niştimanên Kurdistan (YNK)**

Em ji ber serkeftina wê HDP'ê pîroz dikin. Bi serkeftineke mezin, bi rêjeya ji sedî 13 deng wergirt û bi 80 parlamentî beşdarê Parlamena Tirkiye bû. Em hêvîdar in ku ev bibe destpêkeke nû mafê rewa yê gelê Kurdistan biparêze û destkeftiyên mezin bi dest bixe. Daxwaz ji HDP'ê ev e ku bi vê serkeftinê ew şiyana ku wê dikaribe rê li ber çareserkirina pirsgirêka kurd a li Bakurê Kurdistanê veke nîşan bide û dikaribe di guhertina destûra Tirkiyeyê de roleke grîng bileyze. Di derbarê damezirandina hikûmeta nû ya Tirkiyeyê de mirov ji niha ve nikare pêşbîniyekê bike. Gelo wê HDP beşdarî hikûmetê bibe yan na. Eger beşdar bibe wê karibe rê li ber çareserkirina pirsgirêka kurd jî veke, lê eger ku beşdar nebe jî pêwîst e rola xwe bileyze û hem di çareserkirina pirsgirêka kurd de hem jî ji bo guhertina destûrê rolek mezin hilgire ser xwe. Çimku bi vê serkeftinê hêza wê ya parlamentê mezintir bûye û wê dikaribe muxalefeteke baş jî bike.

**Mehmûd Osman**
**Siyasetmedar – Parlamenê Berê yê Lîsta Kurd li Parlamena Iraqê**

Bêguman ev serkeftineke mezin e ku kurd yekem care li Parlamenta Tirkiyeyê bi awayekî xurt kurdan temsîl dikin. Di parlemantê de kurd çiqas pir bin, xêza wan jî ew çend mezin dibe. Dikarin bi vî awayî bandoreke mezin li ser rêvebirina Tirkiyeyê bikin û ev tiştekî baş e ji bo kurdan. Ji ber ku wek partî beşdarê hilbijartinan nedibûn û bi namzetên serbixwe beşdar dibûn, hejmara parlamenên kurd kêm bûn û di parlemantê de pir ne bi hêz bûn, lê niha wek partî beşdar bûn û serkeftineke baş bi dest xistin. Ev bixwe dikare rengê siyaseta Tirkiyeyê biguherîne. Ev yek di qada navneteweyî de jî ji bo kurdan dîmenekî nû peyda dike. Beriya niha kurd bi terorê ve dihatin têkildarkirin. Lê piştî vê serkeftinê ew hişmendî namîne. Di çapemeniya Ewropa de em dibînin ku bi xweşbînî qala vê serkeftinê tê kirin. Ev jî bo kurdan destkeftiyeke baş e ku dikare pêşî li destkeftiyên din jî veke.

Ji ber hêza AKP'ê ya ku bi serê xwe hikûmetê damezirîne nemaye, ji bo pêvajoya çareseriyê xeterî nîne, lewre AKP û Erdoğan tu carî çareseriyê nexwestine, her derewan kirine. Ew dixwazin ku kurd çekan deynin û teslîmî dewletê bibin. Her liser çareseriyê axivîn lê di pratîkê de tiştekî nekirin. Ger ku hin mafê kurdan bidana kurdan û di pêvajoya çareseriyê de hinekî samîmî bûna wê li Kurdistanê ev çend têk neçûna. Dibe ku piştî vê yekê, hin tiştên piçûk bi cih bînin û ev siyaset ne siyaseta AKP'ê siyaseta dewletê ye.

**Ahmed Acar**
**Berdevkê Însiyatîfa Yekîtiya Partiya Demokrat a Kurdistana Bakur (PDK-Bakur)**

Rast e, gelê kurd rayên xwe dane HDP'ê. Ev rastiyeke li ber çavan e, lê belê di vê hilbijartinê de tifaqeke nediyar di nav HDP'ê de çêbû. Têne angaştin ku HDP'ê bi Koma Doğan Holding, Cemaetê û CHP'ê re tifaqekê çêkirî ye û di nûçeyên nû ev tişt têne îtirafkirin. Tê gotin ku van hêzan bi HDP'ê re tifaqê çekirine û di van nûçeyan de îtirafên vê yekê têne kirin ku çawa piştgiriya HDP'ê hatiye kirin.

Li perçeyên din ên Kurdistanê dibe ku cuda xuya bike û serkeftina HDP'ê ji bo kurdan wek destkeftiyeke mezin bê dîtin. Lê belê HDP, ber bi Tirkiyeyê ve çûye. Yanî di beyannameya HDP'ê ya hilbijartinê de, di derbarê meseleya kurdîtî û Kurdistaniyê de tu tiştekî nedît. Wek însiyatîf em neçûne ser sandoqê. Lê belê di siberojê de wê diyar bibe ka dixwazin çi bikin, dikarin çi bikin, di meseleya kurdîtiyê de wê helwesteke çawa nîşan bidin û gelo wê xizmeta entegrasyonê bikin an na? Di rojên pêş de wê hemû ev tişt diyar bibin.

Em ji HDP'ê ne hêvîdar in. Karê me bi xeta entegrasyonê re tune ye û ev lawazkirina xeta neteweyî ye. Lê ger ku HDP, dev ji siyaseta entegrasyonê berde û bikeve ser xeta kurd û Kurdistanê, wê gavê em ê dikaribin xwe nêzîkê HDP'ê bikin.

**Kasım Ergün**
**Cîgirê Serokê Partiya Azadiya Kurdistanê (PAK)**

Herkes li gor xwe serkeftina HDP'ê şîrove bike, lê belê rastiyek heye ku ev serkeftina gelê kurd e. Yanî di vê hilbijartinê de HDP'ê nêzîkî 6 milyon deng stend û ji van dengên ku HDP'ê sitendiye bi kêmanî nêzîkî 5.5 milyon dengên kurdan in. Lê ev kurdên ku deng dane HDP'ê nizanin ku HDP bi siyaseta xwe ya Tirkiyeyîbûnê, dixwaze wan bi pergalê re entegre dike. Yên ku deng dane HDP'ê bi feraseteke ku HDP partiyeke kurd e, deng dane wê. Ev encam ji aliyekî ve hêvî dide me ku li Bakurê Kurdistanê xeta Kurdistanî xwe bi rêxistin bike wê dikaribe kurdan arasteyî xwe bike. Ji alî din ve egera xeteriyeke vê encamê heye ku dikare Kurdistaniyan arasteyî vê siyaseta ku li Bakur serdest e bike û wan têxe xeta Tirkiyeyîbûnê. Ji ber vê yekê, divê siyaseta Kurdistanî xwe bi rêxistin bike da ku kurdan arasteyî xeta neteweyî bike.

# tina HDP'ê çi dibêjin?












**Adem Özcaner – Serokê Hereketa Azadî û Parlamenê HDP'ê yê Wanê**

Em li bendê bûn ku serkeftineke wiha bi dest bixin. Lê belê ji ber ku heta niha jî gelê me di bin nîrê dewletê de bû û newêribû dengê xwe bide xwe û hem jî ji ber ku dewletê nedihişt ku kurd bibin hêzeke xurt a siyasî ev potansiyel derneketibû holê. Di vê hilbijartinê de vê potansiyelê xwe da xuyakirin û ev encam derkete holê. Ev serkeftineke dîrokî ye. Ji ber ku bo kurdan destên xwe dane hev û bi hev re siyasetê meşandin di dilê gelê kurd de hêviyek peyda bû. Vê hêviyê jî di HDP'ê de bi ceste bû. Ger ku dewlet di pêvajoya hilbijartinê de zêde bi ser me ve nehata meyê karibûya rêjeya xwe bigihanda ji sedî 15'an jî. Gellek îftira, çêr û heqaret li me hatin kirin, li dijî me gellek êrîş hatine kirin. Lê li gel van êrîş û heqaretan jî me karibû vê serkeftinê bi dest bixin. Ev serkeftin ji gellekan re wek surprîz hat, lewre wan texmîn nedikir ku wê kurdên ku berê piştgiriya AKP'ê kiribûn li me vegerin. Lê me ji destpêkê ve digot; ger ku em tifaqekê çêbikin û kurdên bawermend qanî bikin em ê serkeftinê bi dest bixin. Bi polîtîkayên xwe yên hembêzkar, di siberojê de em dikarin dengên xwe hin zêdetir jî bikin. Pir kêm tirkan dengên xwe dane me. Me ji sedî 5 dengan ji AKP'ê stendiye û ev potansiyek kurdên bawermendin. Her wiha me ji sedî yek jî ji CHP'ê stendiye ev jî dengên elewiyên kurd in. Bi kurtasî ev serkeftina kurdan e.

Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê Birêz Mesûd, di peyama xwe ya ji bo vê serkeftinê de vê yekê wek serkeftina kurdan nîşan dide û pîroz dike. Em bi vê peyamê şad û bextewar dibin û em hêvî dikin ku ev serkeftin bibe wesîleya xêr û bereketê ji bo kurdan. Her wiha nûnerên siyasî yên hemû perçeyên Kurdistanê jî vê yekê wek serkeftina kurdan bi nav dikin û pîroz dikin. Ev geşedan jî mîsoger dikin ku kurdan serkeftineke mezin bi dest xistiye.

**Sertaç Bûcak – Serokê Partiya Demokrat a Kurdistanê – Bakur(PDK-Bakur):**

Di vê hilbijartinê de kurdan krediyeke mezin danê û HDP'ê serketî bû. Ev yek bi piştgiriyeke xurt a gelê kurd pêk hat. Lê belê HDP dibêje dengên emanet. Li Stenbolê li ku derê rayên xwe zêde kirî ye? Li cihên ku kurd lê zêde ne. Li hemû metropolên Tirkiyeyê û li Bakurê Kurdistanê HDP'ê rayên xwe zêde kirî ye. Kurdên muhafazakar dev ji AKP'ê berdane û dengê xwe dane HDP'ê.

Diyar e wê hikumeteke koalîsyonî pêk were. Ji niha ve mirov nizane ku wê koalîsyoneke çawa pêk bê. Dibe ku AKP û MHP, yan AKP û CHP yan jî AKP û HDP bi hev re koalîsyonekê pêk bînin. Gellek kes dibêjin ev îhtimal ne pêkan e, lê belê di siyasetê de tiştekî ne pêkan tune ye. Ji ber ku di pêvajoya hilbijartinan departiyan bi zimanekî tûnd hev tawanbar kirin ev tê gotin. Gel hilbijartineke zûdem naxwaze û ji ber ku partiyên siyasî jî zanin ku kî bibe sedemê hilbijartina zûdemî wê wunda bike, teqez wê hikûmetek bê damezirandin. Partiyên li derveyê hikûmetê bimînin dikarin roja dengdana palpiştiya hikûmeta nû neçin parlamentê û bi vî awayî rê li ber damezirandina hikûmetê vekin. Em piştgirî didine pêvajoya çareseriyê û ji ber ku MHP li dijî pêvajoya çareseriya pirsgirêka kurd e, wek partî, em naxwazin hikûmeteke ku MHP tê de be bê damezirandin.

Ez dixwazim xemgîniya xwe ya bûyerên piştî hilbijartinê li Amedê rû dan jî bînim ziman. Pêwîst e hikûmet kujerên wan kuştinan aşkere bike. Ev erka hikûmetê ye. Dibe ku hêzeke tarî bixwaze dîsa rewşa Bakurê Kurdistanê veguhêze salên 90'an. Em pir xweşhal bûn ku serokê HUDA-PAR û HDP'ê banga sikûnetê kirin. Lewre şerê ku di navbera van aliyan de derkebe, wê ziyanê bide gelê kurd û wê xizmeta dijminên kurdan bike. Ki kurdan bikuje, ew dibe dijminê gelê xwe û kurd tu carî wan efû nakin.

**'Li Rojhilata navîn yekem car e jin ev çend têne temsîlkirin' Lîza Felakeddîn – Parlamena Partiya Demokrat a Kurdistan (PDK):**

Beriya her tiştî divê mirov vê serkeftina kurdên Bakur pîroz bike. Bi rastî jî ev serkeftineke pir mezin e. Piştî şoreşa Başûrê Kurdistanê ya 1991'an, ev duyem serkeftine. Piştî şerê bi ssalan, ev encam destpêka qonaxeke nû ya siyasî ye ji bo kurdên Bakur. Divê HDP sûd ji vê qonaxa nû bigire ku kurd destkeftiyan bi dest bixin, lewre ji niha û pêve wê gellek derfetên wan hebin ku xebatên mezin bikin. Ev ji bo geşkirina pêwendiyên navbera perçeyên din ên Kurdistan û bi taybetî Başûrê Kurdistanê jî derfetên nû hatine afirandin. Başûrê Kurdistan, bi gellek êş û azarên û zehmetiyên mezin karibû xwe ji bin zordestiya Seddam rizgar bike û bigihîje vê merheleya ku îro tê de ye. Bakur jî HDP dikare bi dostaniya pêkhateyên din ên li Tirkiyeyê qonaxeke wek ya Başûr bide destpêkirin.

Yek girîngiyeke din ya vê serkeftina HDP'ê jî ew e ku di dîroka Tirkiye û Rojhilata Navîn de yekem car e ku bi rêjeyeke bilin, ango ji sedî 40 jin, di lîsta HDP'ê de bûne parlament. Bi giştî di nav hemû namzetên HDP'ê 268 namzet jin bûn û ev rêje ji ya her sê partiyên din ên ku niha di parlamenê de ne zêdetir bû. Li Rojhilata navîn yekem car e ku jin bi şêweyeke demokratîk ev çend têne temsîlkirin. Di lîsta Demîrtaş de ji neteweyên din ên Tirkiyeyê jî gellek namzet hebûn û ev jî ji bo pirrengiyê nîşaneyeke baş e. Di hilbijartinên 2011'an de beşek ku rayên xwe dane AKP'ê, di vê hilbijartinê de berê xwe dane HDP'ê. Demîrtaş hem bi şêweya xwe ya taybet hem jî bi xebatên xwe karibû ku wan qanî bike da ku rayên xwe bidine HDP'ê.

**'Ji bo kurdan wê tiştek neguhere' Fehmi Demir – Serokê Giştî yê Maf û Azadiyn (HAK-PAR):**

Niha ne diyar e ku wê li Tirkiyeyê piştî hilbijartinên 7'ê Hezîranê wê hikûmeteke çawa bê damezirandin. Piştî demekê wê diyar bibe ka encameke çawa derdikeve holê. Lê belê ji ber ku siyaseta MHP'ê bi tevahî siyaseteke dijayetiya kurd e û di hemû pengavên destkeftîger ên hemû perçeyên Kurdistanê MHP dijminahiya wan pengavan dike, ez dikarim bêjim ku hikûmetên ku MHP tê de bin, wê ji bo kurdan ne baş bin. Ji bo hemû perçeyên Kurdistanê wê ne baş bin. Ji ber vê yekê ji bo kurdan pirsa; 'Wê kîjan partî hikumeta nû ya Tirkiyeyê damezirînin?' pir grîng e. Kîjan partî hikûmetê damezirînin wê siyaseta dewleta Tirkiyeyê ya bi kurdên Bakur, perçeyên din ên Kurdistanê û dewletên din re jî reng biguherîne. Ji ber vê yekê, heta hikûmeta nû ya Tirkiyeyê neyê damezirandin, mirov nikare di derbarê siyaseta Tirkiyeyê ya ji niha û pê ve pêşbîniyekê bike.

Derbaskirina benda ji sedî 10'an a HDP'ê wê tiştekî neguherîne. Beriya vê hilbijartinê jî HDP û bi navên din ve partiya hanê di parlamentê de bûn. Beriya niha jî di parlamentê de nêzîkî 40 parlamenên wê hebûn. Gelo ji bo kurdan çi guhertin û wê niha çi biguherînin? Bi raya min wê tu tişt neyê guhertin. Mesele ne bi hêzbûn an jî qelsbûna HDP'ê ye. Mesele ev e: Ev partî ji bo kurdan çi dixwaze û dibêje? Ger ku bibe hevkarê hikûmetê yan jî opozisyon bimîne wê ji bo kurdan daxwaza çi bike? Tiştê grîng ev e. Bi salan e, di parlamentê de ne lê ji bo mafê kurdan tu tiştekî nekirin û wê nekin jî. Ji ber vê yekê derbasbûna bendê tiştekî neguhertiye. Lê ger ku MHP beşdarê hikûmeta nû bibe wê ji bo hemû kurdan ne baş be.

**Ev serkeftina 'Gelê kurd' e Teymûr Mistefayî – Endamê Polîtburoya Partiya Demokrata Kurdistan-Îran (PDK-Î):**

Em pê pir kêfxweş bûn ku kurdên Bakur bi şêweyeke aştîxwaz bikaribin helwesta xwe diyar bikin. Em pir xweşhal in ku li Tirkiyeyê kurd, wek hêzeke mezin dikaribin beşdarê pêvajoya siyasî bibin. Ji ber ku karibû benda hilbijartinê bi pileyeke zêdetir derbas bike û bi 80 parlamentî beşdarê parlamena Tirkiye bibe em HDP'ê pîroz dikin û hêvî dikin ku ev serkeftin bibe wesileya bi destxistina mafê azadiya kurdên Bakur. Em daxwaz ji HDP'ê dikin ku vê hêza xwe ya piştî hilbijartinên 7'ê Hezîranê pêk hatiye ji bo berjewendiya gelê kurd bikar bîne. Heta niha dengê kurdan li partiyên siyasî yên din ên Tirkiyeyê belav dibûn. Vê carê kurdan bi şêweyeke aşkere dengên xwe dane HDP'ê û helwesta xwe diyar kirine. Li hember vê helwesta gelê kurd, divê HDP, bi hemû hêza xwe bergiriya mafê azadiya gelê kurd bike û ji bo çarenûsa pirsgirêka kurd siyaseteke serkeftî bimeşîne. Em HDP'ê pîroz dikin û serkeftina wê dixwazin.

## Serokê ÖSP Çiftyürek:

# Siberoja kurdan serxweb

Kalê Badî

Di vê pêvajoya ku li Başûr, li gel şerê DAIŞ'ê, ji bo serxwebûnê dîplomasiyeke mezin tê meşandin, li Rojava, dereng be jî hêzên kurd kembera ereb dane ber derban, li Rojava piştî serhildana Mahabadê bêdengî serdest bûye û li Bakur jî, piştî hilbijartinan di derbarê çareseriya pirsgirêka kurd de nediyariyek peyda bûye de, Serokê Partiya Sosyalîzm û Azadiyê (ÖSP) Sinan Çiftyürek, ji bo serxwebûnê li gel piştgiriya navneteweyî pêwîstiya xweamadekirinê ferz kir û got: "Amedebûn bi yekîtiyê pêkan dibe"

**Divê kurd ji serxwebûnê re amade bin**

Serokê Partiya Sosyalîzm û Azadiyê(ÖSP) Sînan Çiftyurek got: "Dîrok hem di qada kureyî hem jî di qada herêmî de ji nû ve li rêyeke nû digere, lê belê gel, heta niha di vê lêgerînê de hê jî ne kiryar in. Li herêmê siberoja Sûriye, Urdun, Lubnan û Kurdistanê bi hev re girêdayî ne û heta meseleya Sûriyeyê neyê çareserkirin wê Iraq li benda pêngava dawî binîne. Di van şert û mercan de Kurdistan bi lez polîtîze dibe û Başûr û Rojava nîşaneyên vê rewşê ne. Li herêmê di nav hemû hewldanan de rêça kurd û Kurdistanê heye. Bêyî kurdan hevsengiyên siyasi nameşin. Ji Kerkûkê heta Kobanê, bi cesteyê DAIŞ'ê re kurd di ezbûna bedewletiyê de ne û siberoja kurdên çar perçeyan ya ku hewcedarî hev in jî rastiya serxwebûnê datîne pêşberê wan" Çiftyurek pirsên me bersivand.

**Wek nimûneya dawî Komara Kurd a Mahabadê, hemû raperînên kurd ku bêyî pişta xwe bidin hêza xwegewherî, pişta xwe li hêzên derî xwe girê didin û di dawiyê de têk diçin.**



**Di vê çarçoveyê de, gelo RHK'ê bi dînamîkên xwe-gewherî, amade ye ku serxwebûna xwe ragihîne?**

Divê amade be. Wek her gelan, ji bo serxwebûna kurdan jî piştgiriya navneteweyî grîng e. Lê ji her tiştî grîngtir, piştgiriya siyasî û potansiyelî ya kurdên çar perçeyan e. Partî û rêxistinên kurdan dikarin modêlên xweserî, federasyon an jî kantonan biparêzin. Lê belê divê ev daxwazî van modêlan ji Başûr re nebe asteng. Divê Lozana duyem neyê serê kurdan. Başûrê Kurdistanê berî ku pêvajoya serxwebûnê bide destpêkirin, divê yekîtiya xwe ya navxweyî temam bike, dûre jî piştgiriya perçeyên din bistîne. Piştî ku DAIŞ kete Mûsil û Şengalê û berê çekên xwe dan Hewlêrê, ji bo gelê kurd derfetên nû peyda bûn û Herêma Kurdistanê di warê serxwebûnê de gavan avêt. Wek nimûne: Hêzên Pêşmerge ku tenê di taktîkên gerîllatî de şareza bû, weke hêzeke nîzamdar ku dikare parastina qadî jî bike xwe revîze kir û li gor vê rêbazê xwe bi çek kir. Her çiqas artêşeke nîzamdar be jî, Pêşmerge hê jî girêdayî partiyan e û ev pirsgirêk e. Xebatên yekgirtîkirina Pêşmerge erênî ne, lê belê divê Pêşmerge bi şêweya hêzeke nîzamî bê bi çekkirin û di vî warî de jî amadekarî têne kirin. Her wiha Kerkûk û bajarên din yên ku li derveyî desthilata RHK'ê bûn, fiîlî be jî niha di bin desthilatiya wê de ne û ev rewş ji bo serxwebûnê hêmaneke din a grîng e. Serxwebûna aborî, hîmê herî grîng ê serxwebûnê ye. Ji ber vê yekê RHK'ê, li gel domandina israra xwe ya ji bo petrola xwe rasterast arasteyî bazara cîhanê bike, divê di warê hilberîna alavên din ên ku ji derve distîne jî xwe xurt bike. Ji bo serxwebûnê ev jî xaleke pir grîng e. Her wiha divê siyaseta Kurdistan, pêwendiyên xwe yên bi Îran û Tirkiyeyê re ji nû ve dîzayn bike û helwesteke xurt şanî wan bide.

**Konjonktura navneteweyî ji ragihandina serxwebûnê re çiqas goncav e û gelo helwesta DYA'yê zelal e yan na?**

Di stratejiya DYA'yê ya metîngeriya Avrasyayê de Kurdistana serbixwe heye. Ev zelal e. Nezelalî di pratîka wê ya baş nexwendina kodên siyasî yên herêmê de heye. Serxwebûna Kurdistanê naşibe serxwebûna dewleteke Asya, Afrîka yan jî Balkanan. Kurdistan di nav çar dewletan de ji alî nîjadperestên ereb, fars û tirkan ve hatiye parvekirin û eniya ku kurd tê de têdikoşin pir freh e. Ev rewş hem bûye sedem ku gellek hêz destwerdana siyaseta kurd bikin, hem jî nehiştiye ku hêzên navneteweyî li dijî hevsengiya ku van her sê neteweyan pêk hanîye tevbigerin û xwedî li serxwebûna Kurdistanê derkevin.

> Astengiyên navxweyî ev in; Perçebûna erdnîgarî û cudahiya raman, bîrdozî û modêlên rêvebirinê, çareserkirina pirsgirêka neteweyî zehmettir dikin û rê nadin ku kurd di Kongreya Netewe de hevkariyê bikin.

DYA, niha wê rasterast piştgiriya serxwebûna Kurdistanê neke, lê belê destûr dide ku dewletên weke Komara Çek û Macaristan, heta li rojhilata navîn Misir û Urdun piştgirî bidine kurdan. Divê helwesta DYA'yê wiha bê xwendin.

DYA û hevpeymanên wê yên weke Brîtanya, baş dizanin ku ger li rojhilata navîn kevirek ji cihê xwe derkeve egerî heye ku ziyanekê bide wan. Ji ber vê yekê ye ku ji kurdan dixwazin ku ecele nekin. Helwestên dewletên mezin ên wek DYA û Rûsya û dewletên herêmî yên wek Tirkiye û Îranê girîng in, lê belê ji helwestên wan grîngtir daxwazî û amadebûna kurdan e. Tiştê ku wê encama serxwebûnê pêk bîne siyaset û helwesta kurdan e. Pêwîst e kurd çi bikin ku dewletên mezin û hêzdar serxwebûna Kurdistanê nas bikin? Tiştê herî grîng bersiva vê pirsê ye.

## 'Îran û Tirkiye hê jî asteng in'

**Wê helwesta Tirkiye û Îranê çawa be û wê çiqas diyardar be?**

Helwesta Tirkiye û Îranê grînge lê belê diyardar nîne. Ev herdû dewlet, ragihandina serxwebûna Kurdistanê li dera ha, naxwazin hebûna kurdan jî mîsoger bibe. Lewre serxwebûna Başûr wê kurdên perçeyên din jî nêzîkî daxwaza serxwebûnê bike û ew ji vê yekê pir ditirsin. Îranê hewl dida ku kurdan bi tevahî asîmile bike. Piştî



ku diyar bû ev ne pêkan e, ji aliyekî ve li Rojhilatê Kurdistanê Eyaleteke bi navê Kurdistan ku bi kêrî tiştekî nayê dadimezirîne da ku bêje 'Va ye li vê derê kurd gihîştine mafên xwe' û pêşî li geşbûna doza kurd bigire; ji aliyê din ve jî di yekgirtîbûna Iraqê de israr dike. Eger Îran têbigihîje ku nikare pêşî li serxwebûna Başûr bigire, wê gavê wê hewl bide ku li Başûr dû Kurdistan ku yek navenda wê Hewlêr û ya din jî navenda wê Silêmanî ye pêk bîne û dest bi vê hewdanê kirî ye jî.

Helwesta Tirkiyeyê ji ya Îranê tûndtir û nîjadperestir e. Dewleta tirk heta dûh jî, serxwebûna Başûr li aliyekî, federasyonê jî wek xeta xwe ya sor radigihand û ev sekna wê ya dijber hê jî didome. Ne tenê ji bo Başûr her wiha bi ser Başûr ve dixwaze Rojava jî têk bibe. Lê belê ji ber ku geşedan serxwebûna Kurdistanê pêkan dikin, ji bo bandora xwe ya li ser erdnîgariya Osmanî zêdetir bike û xeta sûne xurtir bike, ji niha ve dest bi amadekariyan dike. Dibe ku dewleta tirk, bixwaze li herêmê, ji nû ve, bi ser kurdan ve xwesteka xwe ya emperyal bi pêk bîne. Ez dibêjim ji nû ve, lewre berê jî vê yekê ceriband, lê belê ji ber geşedanên li Sûrîye û Rojava, ev daxwaza wê bi cih nehat.

Ji alî ereban ve jî mesele wek meseleya Sûriye û Iraqê nayê dîtin. Lewre dema ku yekgirtîbûna Sûriye û Iraqê tê rojevê, 22 dewletên ereb li dij vê yekê heldiwestin.

# ûnê ferz dike



Dewleta 23. a ereb Filistîn jî di rê de ye lê dema ku mijar dibe kurd ku gelheya wan ji 40 milyonî zêdetir e, li dij derdikevin. Lê belê ereb, ji ber helwesta DYA, dikarin wek Misir û Urdunê dev ji dijayetiya xwe berdin.

Tirkiye û Îran, di mijara hukumraniya Kurdistanê de her çiqas rikberê hev bin jî, dikarin hevkariyê jî bikin. Divê siyaseta kurd divê van dewletan grîng bibîne, lê divê bi taybetî Îranê baş bişopîne. Îran, her çiqas xwe ji bo Kurdistaneke serbixwe amade bike jî, dema ku vê serxwebûnê ji bo xwe wek xeteriyeke mezin bibîne, dikare bi xwe re Kurdistan û herêmê jî bişewitîne. Îran, li gel destwerdana hevsengiya navxweyî ya Başurê Kurdistanê, dikare dijberiya kurdên sunne û erebên şîa jî bigeşîne û bi ser erebên şîa ve berê kurd û ereban bide hev û netewperestiya ereb ji bo berjewendiyên xwe bikar bîne.

## 'Divê kurd ji şerê demdirêj re amade bin'

**Tê nirxandin ku DAIŞ, wek hêzeke leşkerî wê dikaribe hebûna xwe bidomîne û baş tê zanîn ku DAIŞ ji alî hin hêzan ve tê piştgirîkirin. Ev yek wê ji bo ewlehiya Kurdistaneke ku serxwebûna xwe ragihandiye ne xeteriyeke mezin be? .**

DAIŞ, hem şûrê hêzên din hem jî şûrê xwe dihejîne. Ger ku li Sûriye û Iraqê, erebên sunne piştgirî nedabûnayê, wê DAIŞ nikaribûya qadeke wiha berfireh têxita bin hukmê xwe. Lê belê di vê plansaziyê de destên nepenî hene. DAIŞ, bi hejmareke hindik a çekdar, bêyî pevçûn pêk bên, karibû Mûsil'a ku gelheya wê 3.5 milyon e bi dest bixe, dûre berê xwe bide Kurdistan û Bexdayê û gellek bajar û bajarokên din jî bi dest bixe. Ev pengav, bi hêza heyî ya DAIŞ'ê û piştgiriya hozên ereb pêkan nabe. Diyar e hesabên hin hêzên mezin jî di vê pengavê de hene û piştgiriya wê dikin. Ev hevkêşeyeke piralî ye û bi nepenî dimeşe. Di rêvebirina vê meseleya grîftdar û zincîre ya li vê erdnîgariyê de, hê jî pêwîstiya DYA û hevkarên wê bi DAIŞ'eke ku dikaribin wê yan rasterast an jî nepenî bikar bînin heye. Siyaseta DYA ku kurdan bi ser Bexdayê û Bexdayê jî bi ser DAIŞ'ê ve bi sînor bike tê zanîn. Piştî ku DAIŞ, ji bo Bexda û Hewlêrê bû gefeke mezin, DYA li Bexda û Hewlêrê zivirî û got: "Hun hem hewcedarên min in, hem jî DAIŞ dijminê we herdûyan e" Bang kir ku li Iraqê hikûmeteke ku hemû pêkhateyan hembêz dike bê damezirandin û ev banga wê hate bi cih anîn. Bi kurtasî DAIŞ bû zemqa yekgirtîbûna Iraqê. Her wiha baş tê zanîn ku wek aktorên sereke yên xeta sunne Tirkiye, Siûda Erebistanê û hevalbendên wan jî, ji ber berjewendiyên xwe yên taybet û hevpar piştgirî dane DAIŞ'ê. Her wiha rejîma Baas a Sûriyeyê jî, di şerê DAIŞ û kurdan de bêdeng ma û carcaran çavên xwe ji DAIŞ'ê re girt. Li gor vî dîmenê heyî, divê mirov DAIŞ'ê tenê wek rêxistineke ku ji alî hin hêzan ve tê piştgîrkirin nebîne. Divê mirov bi ser DAIŞ'ê ve helwesta erebên sunne ya li dij rejimên şîa yên Iraq û Sûriyeyê jî bibîne. DAIŞ îro, ji Iraqê heta Lîbyayê, di qadeke mezin de şer dike û di vî şerî de rola piştgiriya sunneyan û bi taybetî jî rola erebên sunne pir mezin e. Ji ber vê yekê divê em zanibin ku wê gefa DAIŞ'ê ya li ser Kurdistanê demeke dirêj dom bike.

**Ragihandina serxwebûnê wê bandoreke çawa li Rojava û bi taybetî jî li Bakur bike. Meyla siyaseta Bakur a piştî 7'ê Hezîranê, piştî ragihandina serxwebûna Başûr wê arasteyî kîjan alî bibe?**

Bêguman weke ragihandina federasyonê, wê ragihandina serxwebûnê jî li ser perçeyên din bandoreke erênî pêk bîne û wê asta çareseriyê bilindtir bike. Ne dihate hêvîkirin ku perçeyên Kurdistanê, ji hevgirtinê wêdetir, ev çend bi hev ve bêne girêdan. Siberoja hevgirtina perçeyan, pêşî xwe bi ser Başûr û Rojava ve xwe ferz kir. Dikare bê gotin ku perçeyên Kurdistanê wek siyasî û jeopolîtî, tu carî ev çend hewcedarî hev nebûbûn, qedera perçeyan tu carî ev çend bi perçeyên din ve nehatibû grêdan, jeopolîtîka Kurdistanê tu carî evçend çalak nebûbû û tu carî siyasetên kurdan ev çend bêçar nemabû ku bi hev re tevbigerin. Ji ber vê yekê, ji hevgirtinê bêtir hevkariya kurdan xwe li ser siyasetên kurdan ferz dike. Li gel raman û modêlên cuda jî, di serî de Başûr û Rojava, hemû perçeyên Kurdistanê hevkariyê ferz dikin. Başûra ku êşikên serxwebûnê dijî, hewcedarê Rojava ye û Rojavaya ku di nav dorpêçeke ku wê perçe kiriye de, ji bo bêhn bistîne, hewcedare ku Başûr û Bakur hevkariya wê bikin. Ev hewcedariya dû perçeyan, hişmendiya serxwebûnê jî digeşîne. Bakur jî hêmana bêhdanê ya her dû perçeyan e.




Li gel bi hezaran wundahiyan, sedemê ku DAIŞ'ê di dagirkirina Kobanê de pir israr dikir hesabê gihandina Derya Spî ya Sunnestanê bû. Wek parastina axa welat gellek sedemên ku kurd ji bo Kobanê şer bikin hebûn. Lê belê mesele ev bû; "Gelo wê sunnestan bigihîje Derya Spî yan Kurdistan?"

PKK, xwe nêzîkî daxwaza serxwebûna Başûrê Kurdistanê nake û bi raya min piştî hilbijartinan jî wê ev helwesta wê neguhere. Gelo isara dewleta tirk a ku bi ser navê çareseriyê çaresernekirinê ferz dike wê helwesta PKK'ê ya Xweseriya Demokratîk biguherîne yan na? Di demên pêş de em ê bibînin.

## 'Kurd nikarin careke din barê bêdewletiyê hilgirin'

**Tu rêveberiyên Kantonî yên Rojava û pêşniyaza PKK'ê ya Kantonê ya ji bo Başûr çawa dinirxînî?**

Em hem ji bo Rojava û hem jî ji bo Başûr pêşniyaza kantonan napejirînin. Jixwe israra PKK'ê ya kantonan a ji bo Başûr xizmetê li yekîtiya navxweyî ya siyaseta Başûrê Kurdistanê kir. Wek tê zanîn piştî ku berpirsên KCK'ê di daxuyaniyên xwe de gotin: "Perçebûna Iraqê xeteriye, em dewleta neteweyî naxwazin, li Başûrê Kurdistanê dîktatoriya navendî najî û demokrasî dikare hevgirtinê pêk bîne û bijîne û divê Şengal, Kerkûk, Duhok û Silêmanî xwe bi rê ve bibin" Rayedarên başûrî bertekên hevpar nîşan dabûn. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, di serdana xwe ya Talabanî ya beriya çûna Amerîkayê de ji Talabanî soza ku ew piştgiriya wî dikin stendibû. Daxuyaniyên rayedarên YNK'ê yên di derbarê serxwebûn û kantonan de jî li soza Talabanî digoncivîn. Kosret Resûl, ragihand ku 'Divê mafê kurdan ê serxwebûnê hebe.' Endamê Polîtburoyê yê YNK'ê Saadî Ehmed Pire jî di mijara kantonan de gotibû; "Ji bo em paşveçûn û rêveberiyên kantonî bixwazin tu sedemên me tune ne. Ger ku gavek bê avêtin, divê ya konfederasyon an jî serxwebûn ve." Em dikarin guherîna helweta Waliyê Kerkûkê Necmedîn Kerîm a di derbarê serxwebûnê de jî wek nimûne bidin. Bi kurtasî, geşedanên pratîkê şanî me didin ku wê kurd nikaribin careke din barê bêdewletiyê hilgirin ser milên xwe.

**Wê yekîtiya neteweyî çawa pêk bê û astengî çinin?**

Divê kurd, li gor daxwazên siberojê yên perçeyên Kurdistan ên ku li hev digoncivin tevbigerin û Kongreya Neteweyî ya ku wê siyaseta kurd li gor jeopolîtîka Kurdistanê ya ku ji nû ve çalak bûye bi rê ve bibe, li dar bixin. Divê siyaseta kurd pêşî di nav Başûr û Rojava de û dûre jî di nav perçeyên din de yekîtiya xwe ava bike. PKK dev ji ısrara nexwestina dewleta neteweyî û rêveberiyên kantonî berde wê sûdê li gelê kurd bike. Bêguman astengî hene. Hem astengiyên navxweyî hem jî yên derî kurdan hene. Astengiyên navxweyî ev in; Perçebûna erdnîgarî û cudahiya raman, bîrdozî û modêlên rêvebirinê, çareserkirina pirsgirêka neteweyî zehmettir dikin û rê nadin ku kurd di Kongreya Neteweyî de hevkariyê bikin. Yên derî kurdan jî yên ku hêzên naxwazin kurd di Kongreya Neteweyî de li gev bicivin.

# Mûş
## Warê berf û seqemê



**Welat Baz**

Deşteke bêbinî, asoyeke kûr, heta çav bibîne keskahî. Bajarêkî serbejêr. Deverekê çiyayên serspî û deştên bêbinî, welatê berf û seqemê. Mûş. Peytexta Serhedê.

Bajarê Mûşê di nav hêlîlarên 39 û 38 û di nav dereceyên hêlîpana 41'an de cîh digre.

Pîvana xaka Mûşê 8 hezar û 196 km² ye. Ji erdîma Mûşê % 35 çiya, ê din jî deşt an jî plato ne.

Çiyayên Mûşê navdayî ne. Di nav erdîma vî bajarî de gelek gir û çiyayên efsanewî hene. Yek ji çiyayên ku dirêjî erdnîgara Mûşê dibe, Sîpan e. Sîpan, Mûş û Bedlîsê ji hev diqetîne. Li ser vî çiyayî gelek kilam û sitranên evîn û welatparêziyê hene. Ev çiya ku mekana efsaneyên wek Siyabend û Xecê û Evdalê Zeynikê bûye li hemû Kurdistanê hatiye naskirin. Dîsa Çiyayê Şerefdîn ku bi nav û deng e, Mûş û Çewlikê ji hev diqetîne. Di erdnîgara Mûşê de çiyayên herî bilind Bilîcan e. Li vî çiyayî Girê Wengesor 2950 metre bilind e. Çiyayê Xamirpêt jî ku li bakûrê Mûşê, li texma Wartoyê dikeve bi lûtke, zinnar û kortalên xwe tê naskirin. Li seriya vî çiyayî bi heman navî golekî jî heye. Çend ji çiyayên Mûşê ê din jî ku li seriya 2 hezar metreyî bilindin evin: Qozme, Andok, Koxê, Xaçreş, Otliq, Kortik û Yaqûbaxa.

Çiyayên Mûşê di demên kevn de bi daristan û dahlan sergirtîbûn, niha tazî ne. Di salên dawîn de ji ber şewitandin û birrandinê ew daristan hêdî hêdî qediyan û niha nemane.

Li bilindahiyên Mûşê gelek zozan jî hene. Zozanê Şênê ku Amed û Mûşê ji hev diqetîne navdayî ne. Zozanên Şerefdîn ku li keviya Çemê Mûradê ye, ji demên kevn virve bi keriyên pez ve tijî ye.

Deşta Mûşê ji ber giyayê xwe yê bibereket, depoya ka û êmê lawiran ye. Di salên dawîn de ji ber qedexeya derketina zozanan û zexta cerdewaniyê a li ser gundiyan ajalvanî kêm bûye.

Sûka heywanan li Mûşê cîhekî herî biliv e. Bajêr herçiqas di bin zext û tengasiyên de be jî, di xwedîkirin û bazirganiya lawirên biçûk de nawendeke girîng e. Keriyên ku li vê derê tên xwedîkirin, li Erzirom, Wan, Mazra û Dîlokê tê firotan.

**Deşt**

Deşta Mûşê li Kurdistanê yek ji deşta herî fireh e. Ev deşt bi xêrûbêra xwe û bi berhemên xwe ve hatiye naskirin. Deşta Mûşê 1650 km² fireh e. Dirêjiya deştê 80 û firehî jî 30 kilometre ye. Deşt ji alî Çiyayê Şerefdîn, Nemrûd, Sîpan û Xaçreş ve hatiye dorpêçan. Deşta Mûşê ji alî Çemê Mûrad û Çemê Avareş ve tê avdan. Ji bilî vê deştê, li Mûşê, çend deştên fireh û bixêrûbêr ê wek Deşta Kopê, Deşta Lîzê û Deşta Malazgirê jî hene. Ji kiştûkala van deştan ji bilî silq û titûnê, genim, ceh, nok û koka meyan jî tê çandin. Li ser Deşta Mûşê 7 km nêzî nawenda bajêr, çewlika ,Mûş Alparslan Devlet Üretim Çiftliği' hatiye avakirin. Li vir kiştûkala bejî û avî tê kirin.

Titûna Mûşê li navdar e. Titûn nebateke wiha ye ku li her derî şîn nabe. Titûn, axa nerm, ava şîrîn an jî çiya û rûbarên pakij divê. Titûna welatê Serhedê, titûna Mûşê bi sedan sal, li Kurdistan û li Rojhilata Navîn di kîsê cixarekêşan de geriya ye. Kêşên titûna Mûşê vê tamê bi tiştekî din naguhirin. Îro jî li hemû sûkên bajarên Kurdistanê vê titûna zer ku wek porê keçikan zirav e, bibîne.

**Rêvebirî**

Bajarê Mûşê li gor pergala rêvebiriyê parêzgeh e. Bi navê Melezgir, Kop, Warto, Kortik û Dêrxas 5 navçe, 10 bajarok û 361 gundên bajêr hene. Şêniya Mûşê tevî navçeyan 428 hezar e.

Mûş, ji bakûr ve cîranê Xinûs û Tekman Erziromê, ji rojhilat ve cîranê Patnos û Dûdaxa Agirî û Xelat û Adilcewaz a Bedlîsê, ji rojava ve cîranê Solaxa û Gonî ya Çewlikê û ji başûr ve jî cîranê Pasûra Amedê û Sasona Batmanê ye.

Niştecihên bajêr, ji bilî hin karmendên dewletê û çend malbatên koçer ê Azerî û Terekeme, têv Kurdin. Li navça Wartoyê Kurdên Elewî, li deverên din jî Kurdên Sunî dijîn. Elewî bi Zarava Dimilkî, Sunî jî bi Zarava Kurmancî diaxifin.

Heta salên 1980'an Mûş bajarekî biçûk û bêdeng bû. Di salên dawin de dewletê dest bi valakirin û şewitandina gundan kir. Li Bakûrê Kurdistanê bajarekî ku ji vê kiryarê herî zêdetir xesar dîtiye Mûş e. Mûş ji ber ku ji mêjve navendeke têkoşînê ye, sehna şer e. Bi sedan gundên Mûşê hatin valakirin. Gelek gundiyên ku xanî û warên wan hatin xerakirin, berê xwe dan bajêr. Ji ber vê koçberiyê şêniya bajêr bilind bû. Helbet pirsgirêkên bajêr û derdên rûniştvanan jî.

**Nav**

Li ser navê Mûşê gelek gotin hene. Li gor hin çavkaniyan ev nav ji dema Mûşkiyan, (b.z 2000) maye. Li gor hin çavkaniyên din jî navê Mûşê ji alî Îbraniyan ve hatiye danîn. Îbranî ku ji ber zexta Asûriyan reviyane, hatine vê deverê û di wate ya, 'Xaka Avî û Bixêrûbêr' navê 'Mûşa' lê kirine.

Di dema antîk de Mûş û derûdorê bi navê ,Taronitid' tê naskirin. Çavkaniyên Îslamî jî di van deman de bajêr wek 'Tarûn' binavdikin. Mûş di zimanê Erebî de tê wate ya 'Şefaf', di zimanê Farsî de jî tê wate ya ,Keştî ya biçûk.' Di çavkaniyên olî de avakirina Mûşê bi kurê Hz. Nûh, Yasef va jî tê girêdan.

**Dîrok**

Çîroka Mûşê wek çemê Mûradê dirêj e. Dîroka nivîskî li Mûşê bi Ûrartoyan destpêdike. Li gor nivîsarên bizmarî ku ji Asûriyan mane, di salên 1300'an de b.z li herema Mûşê bi navê Qonfederasyona Nairî, mîrnîşînên serbixwe hebûne. Paşê di salên 900an de dema Ûrartoyan destpêdike. Mûş li royavayê peytexta Ûrartoyan diket. Li ser rêyên giring bû, ku ber bi Kurdistan û Anatolyê ve fireh dibû. Di dema Ûrartoyan de, Mûş her tim rastî êrişên Asûriyan hatiye. B.z di sedsala 6an de bavûkalê Kurdan, Med ketin heremê û Mûş jî di nav de, hemû Mezopotamyayê zeftkirin. Wê demê ji bilî Ûrartoyan, li deştên Mûşê û li derûdorê, qewmên wek; Alenan-Saspîran ku di Tewratê de wek Yecûc û Mecûc tên binavkirin, Med, Xaldî, Aramî û Îskîtî hebûn e.

Piştî ku serdestiya Medan bidawî dibe, Pers dikevin heremê. Di van salan de Ksenefonê fermandarê Grekî, ku tevî Artêşa xwe ber bi welatê xwe ve dikşê, ji Mûşê jî derbas dibe. Ksenefon di pirtûka xwe ya bi navê Anabasis de, behsa eşîrên Mûşê û jiyana wan a rojane dike. Nivîskar dibêje; 'dema em ji Mûşê derbas bûn, gelê heremê tiştên wek genim, ceh, zebze, goşt û hespan ji me re peyda kirin.'

Piştî hukumdariya Persiyan ku 300 sal dajo, Artêşa Îskender dikeve xaka Mûşê. Desthilatiya Romayiyan herçiqas demekî kin derbasî Partan dibe jî, heta p.z sala 217'an dajo. Piştî Romayiyan tevî hemû Mezopotamya, Mûş jî dikeve destê Sasaniyan. Di dema Sasaniyan de Kurdistan di nav wan û Bîzansiyan de her tim dibe qada şer. Bizansî car caran heremê dagir dikin. Piştî ku Îslam belavdibe û Artêşa Ereb dest bi seferan dike, Mûş jî di sala 641'an de dikeve destê Ereban. Li heremê di nav Ereb û Bizansiyan de her tim pozberî didome û mîrên Musluman ê Mûş, Melezgir û Xelatê serdestiya Bîzansiyan nasdikin. Ev statûya heremê heta salên 1070'an didome. Piştî vê tarîxê, Artêşa Selçûqî tên heremê û bi alîkariya gelê Mûşê heremê ji Bizansiyan pakij dike. Sed sal şûnde Eyûbî, Mûşê ji Selçûqiyan distînin. Di vê navberê de li heremê gelek car di nav Eyûbî û Selçûqiyan de şer dertê.

Piştî mirina Selehedînê Eyûbî ku desthilatiya wan sist dibe, herema Mûşê tevî





Bedlîs û derdorê dikeve destê Şerefxaniyan. Mûş nêzî 400 sal ji alî Şerefxaniyan ve tê birêvebirin. Di dema Şerefxaniyan de gelek car Aqqoyinî, Qerekoyinî, Sokmenî û Sefewî êrişê heremê dikin û hin deman heremê bidestdixin. Di vê navberê de Mûş di salên 1200'an de ji alî Xarzemşahî û di dawiya salên 1300'an de ji alî Artêşa Tîmûr û di salên 1530'an de jî, ji alî Sefewiyan ve tê talankirin. Di êrişa Tîmûr de Kela Mûşê jî xera dibe. Îdrîsê Bedlîsê ku di sala 1514'an de mirên Bedlîsê bi Yawûzê Osmanî ve girê dide, Mûş û Kurdistan jî dikeve bin bandora Osmaniyan. Heta sala 1670'an herem ji alî Serefxaniyan ve tê birêvebirin.

Di van salan de Mûş wek sancaxeke Wilayeta Wanê bû. Bajarokên wek Bilîcan, Kop, Xinûs, Ercîgan û Hendrîs bi Mûşê ve girêdayî bûn. Herwiha 90 gundê Mûşê û li bajêr jî 150 xane hebûn. Di wan salan de ji ber ku li gundan nifûs hindik bû, dewletê hin eşîrên biyanî li heremê bicîh dikirin. Di van salan de Ermenî û Kurd li Mûşê di nav hev de dijiyan. Gerok Ewliya Çelebî ku di salên 1600'an de hatiye herema Mûşê, di bîranînên xwe de behsa vê taybetiya bajêr dike. Li gor Ewliya Çelebî, Dêrazengil ku li bakûrê Mûşê di nav daristanan de hatibû çêkirin, her sal di demên 'cejna hêkê' de ji alî gelek Ermenî ve dihat ziyaretkirin. Çelebî dibêje: 'Gel bawerdikir ku, kesên werin li vê dêrê ji yezdan çi miradî bikin, ew bicîh dibe. Ji ber vê yekê bi hezaran Musluman jî roja îdê dihat dêrê û ewder dibû wek cîhekî panayirê.'

Di salên 1820'an de, Dewleta Osmanî mîrên Kurd tasviye kir. Rêvebirên Kurdistanê ji peytextê dihatin tayinkirin û Kurdistan bitemamî ket destê wan. Li gor salnama 1892an nifûsa sancaxa Mûşê 105 hezar bû. Ji vê hijmarê 55 hezar kes Ermenî bûn. Di van salan de 472 gund bi sancaxê ve girêdayî bû.

Di dawiya sala 1800'an, Siltan Hemîdê Osmanî, bi rêbazên taybetî gelên bindest li dijî hev bikardianî. Yek ji wan rêbazan Alayên Hemîdî bûn. Ev alayan li alî Mûşê jî aktif bûn. Lewra Mûş deverekî eşaîrî bû. Li heremê ji eşîrên wek, Cibran, Xormek, Lolan, Hesenan û Ebdalan bi hezaran leşkerên Kurd, hatibû civandin.

Ber bi dawiya salên 1800an ku li cîhanê ramanên netewî belavbûn, gelên bindestên Osmaniyan jî ketin nav tevgerê. Yek ji wan Ermenî bûn. Ermeniyan li Serhedê tevî Kurda bûn. Rêxistainên welatparêz yên Ermeniyan li dijî Osmaniyan serhildabûn.

Dewleta Osmanî li ser vê yekê, dest bi qira Ermeniyan kir. Qetliama li dijî Ermeniyan li Mûşê jî bêperwa hat ajotin. Hevkar û qisasên Dewleta Osmanî bi sedhezaran Ermenî kuştin. Piştî qira Ermeniyan nifûsa Mûşê di sala 1914'an de ket bin 60 hezarî.

Di Şêrê Cîhanê ê Yekem de, Serheda Kurdistanê ji alî Artêşa Rûs ve hat dagirkirin. Di Sibata 1916an de Artêşa Rûs bi ser Wartoyê de ket herema Mûşê. Bajêr valabûbû. Bi hezaran kes koçberbûbûn û gelekî ji wan di rêyan de jiyana xwe dabûn.

Dagira Mûşê heta Şoreşa 1917'an ajot. Di dema dagirê de Kurd û Ermeniyan bi hevre di rêwebiriya bajêr de cîh digirtin. Piştî Şoreşa Bolşewîk, Artêşa Rûs ji Kurdistanê vekişiya. Di şerê herema Mûşê de leşkerên Eşîra Cibran û serokê wan Mîralay Xalid Beg li dijî Rûsan qahramaniyên mezin nîşandan û rêzeke mezin bidestxistin. Piştî Rûs vekişiyan, herem ket destê Fermandarê Artêşa Osmanî Kazım Karabekir. Karabekir ji bo ku karibe wan birêvebibe eşîrên Kurd berî hevdida. Di sala 1920'an de di nav Cibran û Xormekan de şer derxist.

Piştî ku Dewleta Osmanî têk çû û di nav gelên bindest de welatparêzî pêşket, Kurd jî liviyan. Kurdan ji bo armancên netewî rêxistinan damezirandibûn. Kürdistan Tealî Cemiyetî li herema Mûşê dixebitî. Di nav damezrênerên vê cemiyetê de ji Mûşê Mebûs İlyas Samî û Mîralay Xalid Beg jî hebûn. Xalid Beg di vê rêxistina welatparêz de berpirsê herema Mûş, Çewlik û Erziromê bû.

Piştî ku di sala 1923'an de Komara Tirk hat damezirandin û Kurdan mafên xwe bidestnexistin, amedekariya serhildanan kirin. Ji bo vê yekê Xalid Begê Cibrî û Yûsif Ziya Paşa yê mebûsê Bedlîsê, bi navê Azadî rêxistinekî damezirandin. Azadî li hemû Kurdistanê têkiliyan danîbû. Lê dewletê ku di sala 1924an de bi van amedekariyan hisiya, Xalid Beg û Yûsif Ziya girt û wan li Bedlîsê dardekir.

Piştî tasfiyekirina wan serokatiya Azadî û a serhildanê li ser milên Şêx Seîd mabûn. Bi vî awayî Serhildana 1925an teqiya. Di dema serhildanê de Mûş bû sehna şerên dijwar. Mûş di pîlanên serhildanê de wek 'herema 4.' dihat binavkirin û hêzên vê derê ji alî Şêx Evdilayê Melekî, Xalidê Hesenî, Şêx Elî Riza û serekên Cibriyan ve dihat birêvebirin. Di adarê de Warto ket destê serhildêran. Di serhildanê de eşîrên Xormek, Lolan û Çarek li kêleka Kemalîstan cîh girtin û êrişê hêzên welatparêz kirin. Warto, Kop, Melezgir û derûdorê di meha adarê de di destê serhildêran de ma. Piştî pevçûn û rûdanan di encam de Şêx Seîd û hevalên wî di 24'ê Avrêla 1925'an li Deşta Mûşê li ser Pira Mûradê, bi bêbextiya Qaso ve hatin girtin û serhildan têk çû.

Di salên 1930an de jî Deşta Mûşê, Deşta Melezgirê bû sehna Serhildana Araradê. Di sala 1930an de belavokên Xoybunê li Mûşê û li navçeyan dihat belavkirin. Bi destpêka serhildanê ve Sêvdîn Begê Hesenî tevî şerwanên xwe li Deşta Melezgirê êrişê Artêşê Tirk dikir.

Piştî serhildanên Araratê Mûş ket nav bêdengiyê. Rejimê li heremê li dijî welatparêziya Kurd tedbîrên tûnd distend. Bajêr di sala 1929an de bû parêzgeh û alayek leşkerî lê hat bicîhkirin. Di dawiya salên 1950'an de rêyên hesin û gelek dibistanên Tirkî hatin vekirin.

Lê dîsa jî li bajêr welatparêzên Kurd, hebûna xwe domandin. Di nav 49 rewşenbîrên Kurd, ku di sala 1959'an de ji alî dadgehên ewlekariyê ve hatin girtin, ji Mûşê Selim Kılıçoğlu û Emin Kotan jî hebûn.

Di bihar û havîna sala 1966'an de li Navça Wartoyê erdhejên mezin çêbûn. Di erdhejê de navçe û 176 gund serûbin bûn û nêzî 3 hezar kesî jiyana xwe wendakirin. Piştî vê bûyerê ku dewletê alîkariya Kurdên afetzede nekir, li bajêr mitîngên siyasî hatin lidarxistin. Di van xwepîşandanan de polîsan êrişê gel kir. Piştî erdhejê, ku malên wan wêran bûn, bi hezaran Wartoyî koçî metropolên Tirkiyê an jî Awrûpayê kirin.

Piştî Karesata Helepçê a 1988'an li Başûr Rejima Baas bi çekên kîmyewî êrişê gel kir. Kurdên Başûr berê xwe dan Bakûr. Bi dehhezaran Başûrî derbasî Bakûr bûn. Ji wan 9 hezar kes li kampekî nêzî Mûşê hatin bicîhkirin. Başûri çar salan li vî bajarî man û di sala 1991an de piştî raperînê vegeriyan ser zêwiyên xwe. Di dema mêvaniya Başûriyan de Gelê Mûşê alîkariyeke mezin ji birayên xwe re kirin. Herwiha serpêhatî û koça Gelê Başûr li ser Mûşiyan bandorekî netewî jî kiribû.

Mûş, welatê Serhedê, welatê dengbêj û dengxweşa ye jî. Dengbêjên wek Şakiro, Marûf, Hisêno, Zahiro, Keremo, Tahiro, Sebrî, Delîl û Nilüfer Akbal çend ji dengxweşên Mûşê ne.

**Pira Mûradê**

Ger mirov ji bakûr ve ber bi Mûşê were, divê ji Pira Mûradê derbas bibe. Pir 10 kilometre dûrê bajêr, di nav rêyên Mûş û Wartoyê de ye. 143 metre dirêj û nêzî 5 metre jî fireh e. 12 çaviyên pirê hene û ji 18 metre bilind e. Dîroka çêbûna pirê nayê zanîn. Li ser diwaran kîtabeyên ku ji tamîratên sala 1817an mane, hene.

Pira Mûradê, di salên dawîn de ji alî leşkeran ve, ji bo çûndin û hatina gêrîlla bê asteng kirin, ji nav ve hatiye bombekirin. Pira ku Şêx Seîd li ser hatibû girtin niha nayê bikaranîn.

# 24 serrîya koçkerdişê Mela Ehmedê Palo de

Abdulhemîd Yûsif

Mi bi rayîrê mamosta Ehmed Huseynî Mela Ehmedê Paloyî (1) şinasna, Homa rehma xo ro her diyan bikero. Wexto ke serra 1988 de mi dest bi wendişê kurdkî kerdbi, o wext kitabê kurdkî qedexe bî; çi wendiş, çi xo dir çarnayîş û çi zî xo het wedartiş.

Kitabê ke ma eşkayne peyda bikin yê Cîgerxwînî, Melayê Cizîrî û Ehmedê Xanî bî. Bê ke ez bi zûran pesnê xo bidî, mi nê wendêne. Yewna zî, Mele Palo estbi ke sey merdimêko nimite, nêasaye û tarîtîye de, kitabê ey binê çengê ma de la ma o nêşinasnayne.

Mamosta Ehmed Huseynî her wext derheqê senînîya sewîyeyê edebî û kulturî, çendînîya dereceyê afernayîşê ey de serebutê xo yê Paloyî dir vatêne. Nînan ra yewe wina bî:

*"Reyke, wexto ke unîversîte de fakulteya edebîyatê erebkî de ez wendekar bîya, mamostayê ma derheqê gramerê fariskî de ma ra nuşteyêk waşt. No sipartek ma rê zaf giran bi, çimkî ma derheqê fariskî de zaf çî nêzanayne. Ageyrayîşê xo yê tehtîlêk de mi Mele Paloyî ra na mesela vate. Badê hîrê rojan ageyra mi ser ke na yo, derheqê persanê mamostayê ma de nuşteyêk bi hawayê akademîk, îlmî û bi edebîyatêko berz nuşto. Gama ke mi no nuşte da mamostayê xo, mamostayî va no nuşte neke goreyê şagirtîya mi, goreyê mamostatîya min o."*

Mi rew Mela Ehmedê Palo dî, gama ke hema xo ser o bi, linganê xo ser o geyrayne, dorê Cirnike de şîyne û ameyne. O dirûvê ey verê çimê mi de yo. Wexto ke têkilîya mi nêzdî ra Rêzanê lajê Mele Paloyî dir virazîya, mi çend rey çend hevalan reyde serdanê Mele Paloyî kerd. La çi heyf ke o wext rewşa sihetê ey zêde baş nêbî, ma nêeşkayne tey suhbet bikin.

Badê ke kitabê Mela Ehmedê Paloyî "Dewr û Gera Kurdistanê" çap bi û resa wendoxan, mi çîyêkê xo yo vîndîbîyaye dî, çimkî hewceyîya mi bi wendişê şîiranê şaîrêkê bi nê hawayî zêde estbî.

Serebutanê ke mamosta Ehmed Huseynî derheqê Mele Paloyî de mi ra vatbî ra yewe zî wina ya:

*"Reyke mi Mele Paloyî rê derheqê kitabê 'Rîsalet el-Xufranî' de qisey kerd. No kitabê nuştoxê namdar yê ereban Ebul Ela el-Me'errî yo. Mi behsê muhtewaya kitabî ci rê kerd; senî awan kerdo, terzê nuştişê ey, ro yewbînan barkerdişê fikran, ancî mi behs kerd ke no kitab hetê tarîxî ra çiqas muhîm o. Badê ke Mele Paloyî nê melumatî mi ra girewtî, qasê di aşman nêasa. La rojêk mi dî ke yew goroza kaxidan a qasê se pelî ha binê çengê ey de, wet ra yeno û mi ra va, ha na yo 'Civîna Nemiran' yanî bi kurdkî sey kitabê 'Rîsalet el-Xufran'î."*

Mi bi naznameyê Kasî kitabê Mela Ehmedê Paloyî Civîna Nemiran ra, destnuşteyê ey ra qasê se rîpelî transkrîbeyê alfabeya latînkî kerdî la seba ke rewşa mi baş nêbî mi heme nêqedêna. Serra 2010 de mi destnuşteyî apey dayî lajê ey ke des hezarî beytî bî, welat û tarîxê Kurdistanî ser o bi hawayê dîyalogê mîyanê çend kesanê ke heqîqeten tarîx û komelê kurdan de estê qisey bîyêne.

Mela Ehmedê Palo 1920 de Sêraçûr (2) de ameyo dinya. Dayîk û bawkê zazî rê virazîyayo, yanî ey şitê dadîya xo bi lorîganê zaravayê zazakî şimito. Badê yeno Binxete û uca museno zaravayê kurmanckî, dima zaravayê soranî zî musneno. Her zarava ci rê berêk seba hezaran çekuyan, serebutan, şeklê qiseykerdişî, çimeyê pers û vateyanê têmîyanekan, ancî deyîr û tecrube û sanik û nameyê cayan akeno.

Seba ke dînê islamî û kitabo pîroz bi erebkî yê coka hetêk ra ganî melayanê kurdan bi hawayêko pêroyî bi erebkî bizanayne, ancî hucreyan de wendekarî fariskî û tirkî zî musayne. Coka bingeyê nuştoxîya Mela Ehmedê Palo dewlemend bi. Zafbîyayîşê zaravayan bi xo zî dewlmendî ya. La zanayîşê ziwananê bînan destêko bîn dewlemendî ya.

Ferhengê ey ferhengêko orîjînal yê kurdkî yo, cumleyê ey tekuz û asan ê, dîmenê ey sey fîlmanê hîrêlet ê. Dûrdîyayîşê ey camê welatparêzîye ra yo; geyrayîş û tedbîr û têwgêrayîşê ey derguşê Kurdistanî ra yo. Cumleyê ey cumleyanê nuştoxanê verênan ra cîya yê, hemdem û hemmanayanê ey ra zî taybetî yê. Bêke o zor bido xo, beytanê ey ra felsefe herikîyeno, bêhemd boya ey vateyanê ey ra yena. Dewlemendîya manaya ca û dewranan zî balkêş a. Ferhengê Mela Ehmedê Paloyî ne şaxê Cîgerxwînî ra ne zî yê Cizîrî ra kemî nîyo labelê bi moral û muhtewaya xo ferhengêko taybet o. Çunke ey gelêk ziwan û zaravayan ra awa edebîyatî şimita.

Malzeme û hacetê beytanê ey kêrameye yê, wezn û terazû û rewanîya beytan de wayîrê nîşan û tuxrayêka taybete yo. Ancî bikarardişê malzemeyê nuştiş û afernayîşê edebî de çimeyê ey orîjînal ê, fikrê ey zî umîdê miletê ey ê:

***Çiraya dewletê pêket***
***Cihê min ber dida xwînê***
***Divaya rûmetê rêket***
***Gelê min berdide kînê***




Mela Ehmedê Palo bawerîya xo de muşexes û zelal bi, hêvîya ey bi şorişê Mela Mistefa Berzanî zaf zêde bî. Hertim vatêne xelasîya miletê kurdî û Kurdistanî do bi rayîrê Berzanî bo. O sey sembolê azadî, camêrdî û kurdperwerîye dîyêne. Ma zafê şîiranê ey de nameyê Berzanî vînenê:

***Seydayê hêja, şêrê Berzanî***
***Pîrê dilovan yê hemî kurdan î.***
***Nav û dengê me te kir xuyanî***
***Bi ceng û mêrî daye cîhanê.***

Kurdî sey miletanê bînan layîqê dewletêka xoserbîyaya û azade dîyêne, bi nuştişê kurdkî û bi serberzîye rayîrê kurdîtîye de seba naye tim xebitîyayêne.

Miletê kurdî o tena sey şaîr şinasnayne. La Mela Ehmedê Palo ziwanzan bi, derheqê gramerê kurdkî de kitabêk nuştbi, ancî ferhengêkê eyê tirkî-kurdkî estbi, bi nameyê "Pendên Ettar" kitabêk fariskî ra tercume kerdbi. No kitabê nuştoxê farisan o namdar Ferîduddîn Ettarî yo. La çi heyf ke muxaberatê Sûrîye dest na nê kitabî ser û berd.

Gelêk kitabê ey nika destê âîleyê ey de estê. Hewt dîwanê eyê şîîran estê. Pa ferhengê eyê tirkî-kurdkî yew kitabê eyê gramerî çap bîyo. Yew şîira xo de vano:

Hinan welat firotin bi erzanî birader
Hinek mirtal û rot in ji bo Dehak û Ejder
Hîn rêberê neyar in, welat kirin perîşan
Ji bo dijmin hewar in, xistin derd û perîşan

Ez bi hêvî ya ke, ameye de ma bieşkin cuya ey hîna roşn bikin. Îmkanê ma zêde bibê, ma bieşkin eseranê ey çap bikin ke neslê ma yê ameyeyî edebîyatê eyê berzî ra fayde bivînê.

---

*1.No nuşte hûmara 37. ya rojnameyê înternetî Pênusa Nû, r. 4-6 de weşanîyayo. Mi kurmanckî ra açarna. (Roşan Lezgîn)*

*2.Sêraçûr yew dewa Pali ya. Dewleta tirkan nameyê na dewe kerdo "Güllüce".*

**Ez rîpelê verên yê kitabê "Civîna Nemiran" ke hema çap nêbîyo tîya neqil kena:**

Pehlewî û Civîndarî

**Pehlewî:**

Diçim, dimînî
Riya Civînî.
Gelim neçînî
Bi şewq û şîn î!

**Civîndarî:**

Divê bixwînî
Xwe zû bigînî
Bê cî derînî
Hê durr diçinî

**Pehlewî:**

Dengê dîlanê
Di vê meydanê
Rengê leylanê
Li ber baranê

**Civîndarî:**

Haha birader
Bibête tevger
Lat û ber û der
Tev têne xweser

**Pehlewî:**

Xewa min nayê
Di vê hewayê
Rengê çirayê
Bibêjim dayê

**Civîndarî:**

Divê bibînî
Ala hilînî
Defter bixwînî
Dijmin biçinî

**Pehlewî:**

Di vê belayê
Bi te xwuyayê
Ne kolî tabî
Li her cîya bî

**Civîndarî:**

Ev nav û nîşan
Ev deng û dewran
Bi dar û lêdan
Di qad û meydan

**Pehlewî:**

Tê der ji banî
Nabim xwuyanî
Dikim jiyanî
Li ber ziyanî

**Civîndarî:**

Were meydanê
Dakev dîlanê
Deşt û zozanê
Rengê cîhanê

**Pehlewî:**

Nakim tebatê
Di vê mezatê
Bême civatê
Bibêjim atê

**Civîndarî:**

Ev keyf û şadî
Şûrê xwe badî
Bi dîn û dadî
Di vî mezadî

# Kitabê Murat Canşadî “Hesê Mişî”



Nadire Güntaş Aldatmaz

Hesê Mişî nameyê kitabê hîkayeyan yê Murad Canşadî yo. Murad Canşad bi hîkayeyanê nê kitabê xo yê diyinî bîyo hîkayenuştoxode zaf muhîm yê edebîyatê ma û mi gore seba ameyoxê edebîyatê kirmanckî hêvîyêk o. Ez texmîn kena ke dinyaya hîkayeyanê ma ya qeyîme bi hîkayanê Muradî zaf aver şona.

Heyatê şarî yo tewr sade; dej û şayîye, eşq, zerrîveşnîye, heyatê hepisxaneyî, dewê veşayeyî, peynîya ro ci eşeqîyena celadê xo, zerrînerm û gonîgermê ke binê qilafetê xirabî der ê, nê hîkayeyan de bi ziwanode mîzehî ameyê verê çiman.

Karakterê hîkayeyanê ey ma rê qet xerîbî nîyê. Belkî tayê kesê ke hîkayeyan der ê zereyê heyatê ma tayine de çin ê la ma înan zaf rind nas kenîme. Mesela, hîkayeya “Şewla” de karakterêde sey Şewla heyatê ma yê rojaneyî de zaf çin a. Labelê ma zanenîme ke domanê sey aye estê, “heval”ê may û pîyê xo yê. Şewla, domana qij a ke sey pîlan vindena, luzimîya “hevalîye” ana herindî, giranîya “hevalîye” ancena, heqa xo ya bermayîşî bîle seba xatirê “hevalîye” kena feda, a ya. Halbukî domanî bi bermiş doman ê.

“Şewla” de domanê ke orteyê sîyasetî de ameyê dinya û bêwext bîyê pîl, înan vînenîme la merdimî wexto ke na hîkaye wende xemgîn nêbeno, bi rîhuyayîş maneno. Hîkayeyê nê kitabî pêro winî yê. Rîyê merdimî de peşmirîyayîşê ca verdanê coka wendena kitabî zaf keyfweşîye dano wendoxan. Mi dest bi kitabî kerd û qet nêwaşt ke destê xo ra ronî heta ke mi qedêna. Ez çend rojî tesîrê hîkayeyan de menda û çend rojî xo xo de huyaya.

Hîkayeya “Eşqê Kerge” de halê kerge zaf şîyo re halê ma kurdan û hetê ra kî şîyo re halê cinîyan. Tîya de luye ge dewlete ge camêrdî ana re vîra merdimî. Qet vîrardiş çin bo kî na hîkaye sey sanike ameya nuştene û hende kî weş a, merdimî ke wende helmo germin yê maya xo peyê vileyê xo de hîs keno. Na hîkaye ra boya sêneye dayîke yena. Coka merdim wazeno ke aye zereyê xo kero û qet ci ra nêvezo. Ziwanê hîkaye zaf keyfin o. Wendişê xo kî hende asan û weş o.

Hîkayeya “Xemgînîye” de kî cumleya peyêne ma rê her çî vana: “Eşto ser eşto ser! Xirê mi ra ke eşto ser!”

Merdim ke bî kokim, hêvîya xo bi cuye nêmende, dinya ke birijîyo umurê ey de nîyo. Dêmek heyat de çîyo tewr muhîm cuya merdimî ya. Dîyalogê qiseykerdoxî û Ap Husênî weş, asan û komîk o. Hîkayeyan de çîyo ke tewr zaf hûner wazeno belkî kî viraştena dîalogêde hûnerin a. Çike viraştişê hîkaye de dîalog ganî zaf herindî de û rind eyar kerde bo. Dîlogê her şeş hîkayeyan kî zaf bi hûner virazîyayê. Qet sabrê merdimî teng nêkenê aksê ci reng û aheng dane hîkayeyan.

Nuştoxî hîkayeya “Hesê Mişî” kî fekê Heşê Birrî ra nuşta. Goreyê efsane Heşê Birrî kî zemanê merdim bîyo. Mevzûyê Heşê Birrî de zaf efsaneyî estê. Nînan ra yewe kî Muradî nuşta. Goreyê hîkaye Heş wayîrê surîye bîyo, pirç roto û qenter de hîle kerdo. O pirç nîşto pira û Heş bîyo heş. Coka qiseykerdişê Heşê Birrî qet xerîb nîyo la ez vana no qayîtkerdiş qayîtkerdişê heşê ke birr der ê, yê înan o. Birr ra asayena heyatê Hesê Mişan o asan, cuya dewe bi çimanê ê koyan qisey bena.

Tîya de leyê qewet û qudretê Heşê Birrî de bêqewetî û feqîrîya Hesê Mişî vînenîme, rindekî û hesreta “Welatê Mazêran” vînenîme. Nuştox peyê na rindekîye ra heta kotî şono, heta kotî ma tey beno merax kenîme la dima bêvengîye... Xirbeyî, reng û boya tenîye, banê dêssîyayê ke ginayê piro, çinbîyayena zimmayîşê hingan, bêvengîye bêvengîye, mîyanê na bêvengîye de kuztayîşê kutikê Hesê Mişî heşnenîme.

Wexto ke dewê ma veşnayî, çik ke can teder o pêro têdima merdî. Nînan ra tewr erey kutikî merdî. Înan tenêna qeyretê cuye kerd la tebayî rê nêbî, peynîye de ê kî merdî. Na hîkaye de kî merdim rasterast halê dewanê winasîyan vîneno. Kutikê Hesê Mişî yo ke zemanê erd lingan ver de lerzêne nika lapê asteyî yo, hende ke helm teder o. Verê nê zulmî de heş bîle ecêbe der o.

Hîkayeyade bîne “Purilîyenê Vewre Ver De” de merdimêk serê koyan der o, ceng der o. Yanî mumkin o ke o bi eskerî ra rastê yewbînî bibê û yewbînî ra merdim bikişê. La eynî merdim qiymîşê keke nêbeno ke aye orteyê vewre erzo. Çike serd o, puk o her ca bi vewre ameyo girewtene, “Dorûver kerr û lal o.” Keka ke bi gonîya ey bena weye û ciwîyena, nika mabênê beçikanê eyî de xilxilîna, sereye xo bena ana, lingan erzena û bi no qiseykerdişî seke verê çimanê ma der a, a keke, keka eyî orteyê vewre de çitur bivindo, se bikero! Kiştene û xelisnayene, can girewtene û can ci dayene, her çiqas ke durum sey paradoxî aseno kî esasen no hal gerayîşê zerrîya qehremanî ya nerm û germine yo. Gêrayîşê keyeyêde germinî yo. Keyeyo ke tede tanîya însanî esta. Belkî coka keka xo peyser pistunê xo de ca keno.

Qehremanê hîkayeya “Pitayîşê Zerrî” seba tayê camêrdanê kurdan numûneyode zaf tîpîk o. Sey şêrî veng vezeno, erd û asmên lerzneno, rast kî “Wehşet” o. La bineyê na wehşetîye de zerrîyade nerme esta ke ge-gane kî beno sey pisinge. Verê qiseyêde weşî de çime xo benê hît, destê xo lerzene. Seba merdimanê winasîyan taswîrêko zaf hunerin o.

Kitabê Murad Canşadî bi hîkayeyade eşqî qedîno. Hîkayeya peyêne kî sey ê bînan weş a û merdimî tey bena. Merdim kewno zereyê hîkaye, tey şono, beno înan ra yew.

Nuştox tîya de ma rê pencereyo ke tede heyatanê qijan vînenîme akeno. Sûkade kije de çîlî-vîlîya qican, bêvengîya dêsan, germê verva hamnanî û bêhedurîye. Dima eşqê Aze û qiseykerdoxî. Pirdo ke mabênê zerrîya eyî û aye der o game bi game beno berz. No eşq mabênê tenayîya însanan de beno zêde, beno rindek. Na sûka kij û bêhedure de êdî tenayîya merdimî nêmanena.

Na hîkaye de nuştox ancî ziwano mîzahî ca nêverdano. Çend cayî de taye hereketê erotîkî bîle bi mizah xemelnaye. Coka giranîya eşqê melankolîkî çîn a û merdim zaf rehet û rîhuyayîş waneno.

Hetê şeklê ziwanî ra Muradî, ziwano standard tercîh kerdo û zaf rind kî bîyo. Ey ziwan winî bi hunero girs xebitnayo û winî destê ey ra rind ameyo ke ez verê nê hunerî de şaş bîya. Teberê tayê qalibanê lokalan ra qeyir –ke luzimîya înan kî zaf a- merdim caran fam nêkeno ke Murad Dêrsimij o. Di-hîrê cayan de tayê îdyomê zaf weşî bî. Ez vana nê tena hetê Dêrsimî de estê. Mavajî: Sey “boya Xizirî” yan kî qalibêde sey “Ti di çik û çikê mi nê!” Zobî Murad bin o kitabe xo mintiqaya xo ra vejîyo û bîyo nuştoxê heme kirmancan.

Luzimîya nuştişê standardî seba ma zaf zaf muhîm a. Wexto ke merdim bi ziwanê xoyê lokalî binuso hem hetê ê bînan ra rind fam nêbeno hem kî ziwanode muşterek nêvirazîno. Kitabê Murad Canşadî tena hetê edebîyatî ra nê eynî wext de seba standardnuştişê kirmanckî numûneyode zaf muhîm o.

Winî aseno ke Murad Canşad bi gêrayîşê xoyê serê dinya peyê beran de kî dewam keno. O bi çekuyanê xoyê zelalan sey awa dereyî xo kuwenê no hêm û do hêm ra, ge şono dewe ge yeno sûke ge şono serê koyan ge-gane kî yeno hepisxane, gêrayîşê xo bi vengode berz mabênê bêvengîye de dewam keno. Çekuyê ey winî bêqusir, her yewe winî cayê xoyê rastî der a ke sey notayanê muzîkî têdima rêz bîyê û ne zêde ne kî kêmî yê, goşan rê zaf weş yenê. Bi no tore hîkayeyî hem manaya xo ra hem kî ahengê xo ra teba vîndî nêkenê.

Murad Canşad, ez bawer a ke rojê yeno wendene û tarîxê edebîyatê kirmancan de bereqîno. Nika cayê ey çiqas ke teng o, zîhnê xo, ufqê xo hende hîra yo. Hêvîya mi winî ya ke Murad na raya derge ra gêrayîşê xo dewam keno.

Ez nika ra kitabê eyê hîrêyinî pawena.



# Kurdên Enqere'yê gihîştin hev



Bernameyên ku rojnameya me BasHaber / BasNûçe lidardixe bi pêşengeha berhemên Hunermendê Başûrî Nezhat Ezîz Surme ya li Enqere'yê berdewam in. Piştî ku dîsa li Enqere'yê bi amadekariya rojnameya me bernameyek bo nivîskar Bextiyar Elî hitibû lidarxistin vê carê jî pêşengeha ku ji berhemên Nezhat Ezîz Surme pêk te bi beşdariyeke qerebelix hat lidarxistin. Gelek kesên navdar û parlementerên nû jî beşdarî bernayê bûn.

Vekirina pêşengeha ku ji aliyê Parlementer Dergir Mir Mehmet Fırat, Mithat Sancar û Civaknas İsmail Beşikçi ve hate kirin bi axaftina nûner û edîtora BasNûçe'yê a Enqereyê Yeter Polat dest pêkir. Yeter Polat kêfxweşiya xwe anî ser ziman ku, wek BasNûçe'yê bûne alîkarê vê pêşangehê û got armanca me ji bo vê pêşangehê ew bû ku em bibin sedema avakirina pireyek di navber Başûr û Bakûrê Kurdistanê û wiha pê de çû, "Em dixwazin ku karê hunerê têkiliya di navbera kurdan her qewî bike." Pêşangeh bi axaftina dostê kurdan, nivîskar û civaknasê tirk ê navdar Îsmaîl Beşîkçî û hunermend Nezhat Ezîz Surme di saet 14.00 de li pêşangeha CerModern a li Enqere'yê destpêkir. Piştî axaftina destpêkê qurdeleya bernameyê ji aliyê Îsmaîl Beşîkçî û Nezhad Ezîz Surme ve hat birîn.

## Pêşangeh bi beşdarbûna navdaran gengîntir bû

Pêşangeh bi beşdarbûna gelek nivîskar, zana, rewşenbîr û sîyasetmedarên kurd destpêkir. Her wiha ji hêla medyaya kurdî jî eleqeyek mezin hat nîşandan ji bo pêşangehê. Di nav wan beşdarvanan de kesên wek nivîskar Şakir Epozdemir, nivîskar û lêkolîner Mehmed Bayrak, neviyê Şêx Seîd Diyadîn Ferat jî hebûn. Her wekî din, ji medyaya kurdan Rêvebirê BasNews'ê Botan Tehsen û Gerînendeyê Giştî yê rojnameya me Faysal Dağlı û çendîn rojnameger û rojnamenûsên kurd û tirk jî beşdarî pêşangehê bûn. Dîsa di nav beşdarvanan de mûzisyenê blues a kurdî Ercan Bîngol, wênesaz Gulîzer Kiliç, helbestvan Sema Güler, rûspî Mela Zekî, karmendê navdar ê kurd Talat İnanç û alîkarê serokatiya HAK-PAR'ê Alaadin Aras jî amade bûn. Pêşangeh bi kokteyl ango vexwerinê û bi mûsika qlasik bandorek mezin li ser beşdarvanankir.



## Yek ahengî li berheman nihêrîn

Beşdarvanên pêşangehê, bi hev re bi avayekî germ û ji dil li tablo ango berheman nihêrîn. Afirînerê tabloyan Nezhad Ezîz Surme yek bi yek hunera xwe ji beşdarvanan re şîrove kir. Tişta balkêş ew bû ku di dema şîroveyan de nêrînên cûda hebûn û ev yek jî dibû sedema henek û rûgeşiya di navbera beşdarvanan de. Hunermend Nezhad Ezîz Surme berhemên xwe bêhtir li ser zehmet kêşaniya jinan û evînên wendayî çêkiribû, wê yekê jî dîsa bandorek taybet li ser herkesîkir.

## Bi daxwazî û hêviyan bi davî bû

Piştî ku pêşangeh bi beşdarbûneke mezin ber bi dawiyê hat, her yek ji beşdarvanan hêvî daxwaz û hestên xwe li ser deftera ji bo beşdarvanan hatibû amadekirin nivîsandin. Di nav wan beşdarvanan de yek jê nivîskar û civaknas Îsmaîl Beşîkçî bû. Beşîkçî di nivîsa xwe de hest û kêfxweşiya xwe ji bo pêşangehê anî ziman. Her wiha hêviya berdewamiya karên hunerî ji bo kurdan kir. Û di dawiya nivîsa xwe de behsa taybetiya pêşangehê kir, ku bi saya pêşangehê ewqas navdar, zana, karmend û sîyasetmedarên kurd hatinv ba hev. Wekî din xwandekarên kurd ên li Enqere'yê jî eleqeyeke mezin ji bo pêşangehê nîşan dan..





# Sefera Naziyan a ber bi Kurdistanê ve

Sedemeke rûdana serê cîhanê ê pêşîn ew bû ku hêz û qûweta dewletên xurt ên wek Îngilistan, Fransa, Rûsya, Emerîka, Japonya û Elmanya gelek nêzikî hevdu bûn û her yek ji wan dixwast ji hemûyan xurttir bibe. Ev yek piştî şerê 4 salan neqewimî, tu yek ji wan nebû ya herî xurttir. Ji ber vê jî bê nebê di salên 1930'an de dinya dîsa berbi şereke mezin diçû. Ev pêvajo herî zêde li Elmanya bi lez dimeşiya. Ji sala 1933'an pêde rêvebiriya Almanya ketibû destê Hîtler û hevalbendên wî, yên ku roj bi roj amadekariya şereke mezin dikir.

Piştî Gottfried Mûller di sala 1936'an de ji rêwitiya xwe a li Kurdistanê vegeriya Elmanya, ew çû leşkeriyê lê piştî perwerdeyeke di demeke kurt de wek amadeyê bo demên seferberiyê ji paşde hat şiyandin. Mûller ji wê demê pêde dîsa weke berê dest bi karê xwe kir.

Dema di sala 1939'an de şerê cihanê a duyemîn bi beşdarbûna heman dewletan destpêkir, salek şûnde Mûller jî ji nû ve dibe leşker. Piştî perweyeke di nav artêşê de ew wek endamekî koma sîxûrên alman bo Tirkiyê tê şiyandin. Artêşa Elmanya ji sala 1939'an pêve di şer de gelek pêşde çû, piştî dagirkirina gelek welatên Ewrûpayê ew li başûr gihîşt Misirê û li rohilatê jî ber bajarê Stalîngrad û li Qafqasya ya başûr jî heta Bakûyê.

Piştî ku Mûller bo demek dirêj li Stenbolê wek serokê komeke ji sîxûran xebitî û di bihara sala 1942'an de vegeriya Elmanya, wî seh kir ku li wir bêtahmî û bêkêfiyekê rûdaye, êdî wek berê nûçeyên serfiraziya Elmanan di şer de belav nabin, meşa artêşê rawestiyaye û her roj qala zêdetir kuştî û birîndarên Alman tê kirin. Mûller seh dike kû sedema vê yekê kêmbûna petrolê ye û ji ber wê artêşa almanya asteng bûye, êdî nikarê pêşde bimese. Herkes qala petrolê dike, wê çewa û ji kû bê bidestxistin? Ew jî her roj mêjiyê xwe bi vê mijarê ve mijûl dike û bi carekê de ew gera xwe ya beriya çend salan a li Kurdistanê, bi piranî a li Kerkûk û Musilê tîne bîra xwe. Dîsa kurmên maceraperestiyê dikevin canê wî, ew bi lez serîlêdanekê bo artêşê dinivîse: Li Kurdistanê petrol heye, ez wir baş nasdikim û gelek dost û nasên min li wir henin.

Di ser re heftiyek derbas dibe navenda artêşê bangî Mûller dike û bi wî re diaxife. Biryar tê dayîn ku ev pêşniyariyên Mûller bên ceribandin û bo vê bi lez amadekarî bên meşandin. Ji bo dema piştî ku Mûller û hevalên wî xwe bigihînin Kurdistanê û di nav şêx û serokeşîran de belav bibin, şîara wan a bingehîn li hember kurdan jî hatiye eşkere kirin: “Hûn petrolê bidin Almanan, ew ê jî alîkariya azadî û dewlemendbûna we bikin.” Goreyî planê divê kurd bona serhildaneke li dijî îngilîzên li Îraqê bên amadekirin û dûre artêşa alman xwe bigihîne alîkariya wan.

*Di sala 1947'an de îngiliz Mûller tînin bajarê Hamburgê, ew wî salekê di kampekê de bi berdewamî dîldigirin û paşê berdidin. Dema Mûller tê mala xwe jin û kûrê wî ji ber rewşa wî ya perîşan wî nasnakin, porên wî weşiyane û diran di devê wî de nemane.*



Mûller gelek hevalbendan yên ku bi Kurdistanê beled in jî peyda dike bona ku ew di vê rêwitiyê de hogiriya wî bikin. Mûller pê re serî li sixûrên li Stenbolê jî dide û bi saya wan kurdekî bi navê Remzî peyda dike yê ku kûrê serokeşîrekî ji Hewlêrê bûye û ji bo xwendina zanîngehê li wir dima. Hemû amadekariyên perwerdeyî, leşkerî, siyasî û sîxûrî tên qedandin û rêwîtî destpêdike. Ew di rojeke hezîran a sala 1943'an bi balafireke şer ji Berlînê berbi girava Qirimê rêdikevin û ji wir jî bi ser Behra Reş, bakûrê Kurdistanê û Urmiyê re xwe digihînin başûr û ji balafirê peya dibin. Lê belê ew di demek kurt de seh dikin ku ew hatine li cehekî cûda, li nêzikî Musilê. Plana wan tevlihev dibe. Polîs û leşkerên îngilizan bi hatina wan hesiyane û li pey wan ketine. Ew bi zor û dijwariyeke giran xwe digihînin mala bavê Remzî li Hewlêrê. Ji wir ew bi siwarî berbi çiyan diçin.



**Mehmet Gültekin**

Piştî demekê pêşiyê Remzî û piştre jî Mûller û hevalên wî ji aliyê polîsê îngiliz tên girtin. Dema ew di zindana Hewlêrê de bûn, rojekê deriyê wê vedibe û Remzî dikeve hundir. Remziyê berê çûye yekî nû hatiye, bi lêdan û îşkenceyan perîşan bûye. Polîs li hemû girtiyan îşkenceyên xedar dikin, wan ji wir dibin Musilê û piştre jî Bexdayê. Remzî demekê şûnde aqilê xwe winda dike û ji zindanê tê berdan, bêçare berê xwe dide nava çiyayên Kurdistanê. Îngiliz Mûller dibin Qehireyê û piştre wî dîsa vedigerînin girtîgeha Bexdayê. Li her derê serbazên taybet îfadeyên wî digirin û di encamê de cezayê kuştinê li wî dibirin. Lê piştî salekê ew Mûller û almanên mayîn bi balafirekê tînin Filistînê û di dawiya sala 1945'an jî ji wir dibin Misirê.

Di wê navberê de şerê mezin êdî qediyaye, Elmanya a ku ev şerê xedar dabû destpêkirin têk çûye; di nav çend salan de dora bîst milyon mirov hatine kuştin, gelek birîndar bûne, gund û bajar seranser hatine wêran kirin, trajediya herî mezin a dîroka mirovatiyê...

Di sala 1947'an de îngiliz Mûller tînin bajarê Hamburgê, ew wî salekê di kampekê de bi berdewamî dîldigirin û paşê berdidin. Dema Mûller tê mala xwe jin û kûrê wî ji ber rewşa wî ya perîşan wî nasnakin, porên wî weşiyane û diran di devê wî de nemane.

Bayê maceraperestiyê di dawiyê de Mûller xistibû nav çerxa dewletê, a artêşa Hîtler û saziya sîxûriyê, yên ku ligel jiyana bi milyonan mirovan ya wî jî wêran kiribûn. Ew êdî bûbû mirovekî bêdeng û tenê, di nav kolanên bajarê Stuttgartê de bi dest û milên sistbûyî digeriya. Çavên wî tenê mirovên bêkes û bêmal ditîtin, her roj bi wan re diaxifî. Mûller ji wan pirs dike: Hûn çima kar nakin?, ew jî bersîvê didin: Mal û navnişaneke me nîne, ji ber wê jî tu kes kar nade me.

Mûller di bîranînên xwe de dibêje: “Di zindana mirinê de ez bi dûr û dirêj li ser ‘jiyanê’ difikirîm. Pê re min ji xwe re digot; ger mucîzeyek peyda bibe û ez rojekê bigihêjim azadiya xwe, ez ê ji bo jiyanê kar û xebatan bikim. Li wir di zindanê de fikra saziyeke bo seranserê dinyayê bi navê “Birayetî Salem“ di serê min de peyda bû.”

Ew di sala 1955'an de nasiya xwe dide Abram Poljak ê cihû û ji bo ji nû ve avakirina dostaniya xristiyan û cihûyan tev wî li gelek bajar û welatên Ewrûpayê digere û konferansan dide, mal û milkê xwe jî wek alîkarî dide du jinên cihû ên hewcedar.

Di roja 16 îlona 1957'an de ew saziya alîkariyê a bi navê “Birayetî Salem”avadike ya ku îroj li seranserê dinyayê kar û xebatên bo feqîr û hewcedaran dimeşîne. Ev sazî piştî çand salan li gelek bajaran malên ji bo zarokên bêkes jî avadike. Ew bi xwe hetanî 89 saliya jî ji ber kar û xebatên saziya xwe li piraniyê welatan digere.

Gottfried Johannes Mûller di sala 1914'an de ji dayikê bûbû di sala 2009'an de jî koça dawiyê kir. Pirtûka wî ya duyem a li ser vê rêwîtî û serpêhatiyên li Kurdistanê gelek caran, her weha bi zimanên almanî, îngilizî, kurdî (başûr) û tirkî jî hatiye weşandin.

# "Dixwazim bînêr bi tabloyên min xewnan bibînin"

Mehabat Îdirî

Hunermend, rojnamevan, Pêşmergeyê berê Nazhad Ezîz Surme ku wek yekem hunermendê kolajê yê li Kurdistanê tê zanîn bi hunereke ku li Kurdistan û cîhanê kêm tê şopandin û naskirin, bi pêşengeha berhemên xwe li Enqere'yê ye. Surme ku di jiyana xwe de wekî her kurdî rastî gelek êş, azar û sirgunê hatiye, piştî ku li sengerên şer wek peyamnerekî Pîşmerge kar dike û dû re bi ramanên xwe piştgiriya şoreşa kurdan dike demeke dirêj neçar dimîne ku karên dûrî hunerê bike lê niha bi tablo û xêzên xwe bala bînêran dikşîne. Surme tîne ziman ku kurdan heta niha li ser xizanî û trajediya xwe gelek kar kirine lê êdî divê ji niha û pê de bi huner û aştiyane mfên we ji cûhanê bixwazin. Surme diyar dike ku tabloyên wî li ser bingeheke reş dineqişîne û ew dixwaze ku kesên ku li tabloyên wî temaşe bikin li ser piyan di nava xewnankevin.



**Pêşiya her tiştî bo xînêrên me hun dikarin xwe bidin nasandin?**

Ez Nazhad Eziz Surme, li Başurê Kurdistanê li navçeya Galala yê jidayik bûm. Galala warekî ji Şoreşa Îlonê ye, ji xwe cenabê Nemir Mele Mistefa Berzanî gelek li wir ma di dema şoreşê de. Min heta pola 5 an li dibistan Galala'yê xwend û dû re derbasî bajêr bûm. Lê bi rastî her tim di dilê min de wêne û resm hebûn da ku ez bi wê hunerê re mijûl bibim heta ku berheman çêbikim. Lê sîstema perwerdehiya me dest nedida ku kes bi hunerê re mijûl bibe û karê hunerê bike. Û ev rastiya hin jî dewam e li welatê me. Heta ku ez herim bajêr min pênûsên bi reng qet nedîtibûn. Ji xwe qaşo dersên me yên hunerê hebûn lê mixabin mamosteyên wan dersan tunebûn, ji ber wê jî me ti carî perwerdehiya hunerê nedît. Lê bi rastî ew hesreta tim di dilê min de mabû, da ku ez mezin bûm û min bi xwe, bi derfetên xwe dest bi hunera wêneyên kir. Lê pêşiya karê hunerê min li Bexda'yê karê rojnamegeriyê kir ji bo çend salan.

**Yekem berhema we a li ser hunera kolajê çibû û we çawa dest pê kir?**

Bi rastî min ne bi avayekî profesiyonal, lê ji bo destpêkirina vê hunerê çend berhem çêkiribûn. Li ser helbestan li ser hin hestên xwe, min hin berhemên amator çêkiribûn. Lê yekem pêşengeha min a bi avayekî profesiyonal, ji xwe yekem pêşengeha hunera kolajê a li Kurdistanê ye. Berî min ti kesî pêşengeha kolajê li Kurdistanê saznekiriye. Yekem pêşengeha min a li ser hunera kolajê, di sala 1995'an li bajarê Selahaddinê hate lidarxistin. Piştre Silêmanî, Duhok, Aqrê, Soran. Û di van rojan de jî li Enqereyê. Her wekî din, dema min dest bi hunera kolajê kir, li welatê me şer dest pê kir û min navber da karê hunerê. Ji xwe herêma ku ez lê dijiyam azad bû lê belê ez dîsa bûm Pêşmerge. Ne ku Pêşmerge'yê şer, ez duçûm li sengerên şer bi avayekî peyamnêrî û nûçegihanî. Ji xwe ez yekem peyamnêrê Başûrim û kesê ku yekem car li ser Radyoya Dengê Kurdistanê nûçegihanî dikir.

**Hûn dikarin hinekî behsa hunera kolajê bikin?**

Bi rastî kolaj xwedî dîrokeke dirêj e, mînak; yekem karê kolajê ez dikarim bibejim ku B.Z. li Çînê dema ku rûpel ango kaxiz hatibû dîtin, di wê demê bi dest pê kiriye. Ne mîna îro lê bi şêweyekî din hunera xwe li ser wan kaxizan dikirin. Piştre di sedsala 10'an Japonî'yan wek karê xetatî ev hunera bi awayekî dikirin. Ji wir pê de, sedsala 13'an de li Eewrûpa hunerê nû bi nû dest pê kir û ez dikarim bibêjim tabloyên ayînî ango dînî ji dêran re û tabloyên key û xatûnan ji bo qesran dihatin resmkirin. Bi heman cûreyî heta sedsala 19'an ev huner gihîşt îro. Lê kolaj bi cûreya xwe ya orîjînal wek îro, di sala 1912'an de ji destê wênesazê îspani Pablo Picaso dereket. Ango sedsala 20'an. Û bi vî awayî hunera kolajê bû hunereke serbixwe. Kolaj tê wateya ku tiştek bi tiştekî din ve bê zeliqandin. Hemû tişt dikare bibe parçeyek hunera kolajê, çi hesin çi kevir çi bizmar çi qirş û qal. Tenê bila wateyek xwe hebe.

**Ji bo wê kolaj tê çi wateyê?**

Li gor min her hunerek bi peyamek xwe heye. Dema ku ez hunera kolajê dikim, peyama min însan e. Reste ez kurdim, însanekî Kurdistanî me, lê peyama min a bi kolajê a sereke însan û însaniyet te. Lê dîsa jî mirov nikare bibêje tenê terîfek hunerê heye, ango bi taybet bibêje huner ev tişt e. Ji ber ku huner tiştekî hisî ye, ji dil ji giyan tê. Mînak; ew kirasê li ser we, dema ku tu çûyî û te ew kiras stend te bi hest û hiseke hunerî ew jibart di nav wan rengên din de û te li xwekir. Kirasên din jî hebûn lê hestekî hûn dorpêçkirin û we ev reng ev model stend. Îca ka tu bersiva wan hestên xwe ên ev kiras li we dan stendin bide min û ez jî wê demê ji we re bibêjim kolaj ev tişt e. Û kesê ku ew kirasê li ser we dîzaynkir, wî/wê kesî jî bi hesteke hunerî ew kiras afirand. Min hemû pêşengehên xwe bi peyamekê pêşkeşkir, lê di nav wan hemû peyaman de her tim însan hebû. Ji ber wê jî dema hûn li tabloyên min temaşe bikin, hûn dê bibînin ku, lewheyên tabloyên min tev reş in. Û min li ser wan lewheyên reş hunera xwe nîşan daye. Çima reş? Dema ku mirov xewnan dibîne, çavên xwe digire û dikeve xewê ji bo wî her der tarî ye û tenê xewna wî ronahi ye. Min xwest ku hûn bi saya tabloyên min, li ser piyan xewnan bibînin.

**Hûn dixwazin ji bo ciwanên kurd ên hunerê dikin re (çi mûsîk çi helbest çi wêne) peyamek çawa bişînin?**

Ez dixwazim ku ciwanên me bi hemû cûreyên hunerê re mijûl bibin. Çi helbest û wêje çi wêne çi sînema, drama, mûsîk... Ciwanên me dikarin bi hunerê gelek tiştên mezin ji bo welatê xwe û çanda xwe bikin, ku bi çek û rextan nayê kirin. Em dikarin bi hunera xwe biçin li nav netewan ne ku bi şer. Divê em êdî dev ji şer berdin, dev ji feqîriyê, xizaniyê berdin. Nebêjin em hejarin, belengazin û lewazin, me Enfal dîtine, Helebce û Agirî dîtine. Dive em bi xwe bi çand û dîroka xwe û bi gelê xwe bawer bin. Em ji gelan re bibêjin va ye em hene. Va ye ev hunera me, ev mûsîka me ev wêjeya me, drama me! Welatê me cîhê medeniyet û şaristaniyê ye, em kurd dikarin tenê bi mîrateya kal û bavan bijîn ne ku bi neft û petrolê bi pereyan. Tenê bila dîrok û çanda me baş were pêşkeşkirin ji tûrêstan re. Ew ji welatê me re bes e. Dive her mirovên kurd zarokên xwe li gor hunera wan mezin û perwerde bikin da ku ji bo gel û welatê xwe li gor hunera xwe xebatê bikin ew zarok.

**Di jiyana we de heps û zindan û sirgûnî jî heye, sedema hunera we bû an kurd bûna we bû?**

Na sedem ne hunera min an jî nivîskariya min bû. Sedem qedera gelê min bû, ji xwe nîvê gelê kurd li Iraqê hati bû sirgûnî kirin. Piştî têkçûna Şoreşa Îlonê, li her deverên Kurdistanê sirgûnî û koçberî çê bû. Ez bi xwe çar salan li başûrê Iraqê sirgûn mam, pişt re zext û zorî him li ser kurdan him jî li ser çand û zimanê wan dihat kirin ji aliyê rejîma Iraqê ve. Em komeleyeke rewşenbîr û nivîskaran ji aliyê rejîma Iraqê ve hatin binçavkirin û me heps jî dît.

**Hûn wek hunermend û rewşenbîrekî kurd, ji kurdan bangawaziyek çawa dikin di van rojên pir hesas de?**

Ez dikarim bibêjim ku, ji bo min dilşadiya herî mezin ewe ku her çar parçeyên Kurdistanê azad bibe û gelê min şadiyan bibîne. Îro em dizanin ku welatê me parçekirî ye, her parçeyek jî bi çandeke din jiyana xwe avakiriye. Bakûrê Kurdistanê wek tirkan, Başûrê Kurdistanê wek ereban, Rojhilatê Kurdistanê wek farisan jiyana xwe avakirine. Dive her parçeyek li aliyê xwe xebatê bike û xwe azad bike, bi piştevaniya birayên xwe ên li parçeyên din ku heta tiştek ji bo xwe peydakirin. Li gor min divê edî kurd ne bi şer, bi aştiyê mafên xwe bi dest bixe. Ez her tim wiha difikirim, şer îstisna ye lê aştî qaîde ye. Li welatê me tim şer e, ev yek ne sûcê me ye dijminan tim şer spartiye me. Lê ez dîsa di dawiyê de dibêjim ku, şer îstisna ye lê aştî qaîde ye.